# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL Hejmar: 68 31 Tebax - 6 Îlon 2015 basnews.com


## Ömer Dilsoz: Paşxana min, çîrokên bapîrê min e

R14







# Siyaseta kurd li ber ezmûna çareseriyê ye

Li Rojhilata Navîn li aliyekî kaoseke mezin a siyasî û civakî berdewam e û li aliyê din Rêveberiya Herêma Kurdistanê jî di heman demê de bi DAIŞ'ê re li eniyeke berfireh têdikoşe. Tevî vê yekê mijara hilbijartina serokatiya herêmê jî xendeqek xist nava siyaseta kurd. Tê gotin ku heger RHK qeyrana heyî bi reyên aştiyane çareser neke wê planên serxwebûnê jî derbeyeke giran bixwe. R02 - 03

Herçiqas maveya serokatiya Barzanî bo 2 salên din hat dirêjkirin jî di gelek mijarên ku dahatuya welat eleqeder dikin de di navbera siyesata kurd de pozberiyeke balkêş didome. Bandora hêzên derve jî li ser van mijaran dibe û çaverê ye ku ew rewş di dahatuyê de pirsgirêkên mezin derxe ber Kurdistanê. Fikar ev e ku pêknehatina yekîtiya navxweyî rêz û prestîja di derheqê kurdan de têk bibe.



## Şerê tampon li dar e!

Rayedarên Tirkiye'yê di daxuyaniya xwe de eşkere dikin ku hewldana wan a li Sûriye'yê û avakirina "herêma ewle" ango herêma tampon ewê li ne dijî destkftiyên kurdan be. Perwerdekirina milîşeyên tirkmen ên li Heleb û Ezazê û şandina wan a ber bi Cerablûsê dide eşkerekirin ku Tirkiye'yê bi operasyonên hewayî û li jêr zemîna bejayî dest bi kar kiriye û ewê hin komên îslamî di navbera bajarê Kobanê û Efrînê de bi cih bike û ewê geşedanên nû rû bidin. R04-5

## "Guhê desthilatdariya kurdan serad e!"

Romannûsê kurd Jan Dost di her romaneke xwe de li ser rûpeleke dîroka Kurdistanê rawestiyaye û bere xwînerê xwe jî dayê nava wê dîrokê. Her romaneke Dost "bîreke dîroka" kurda ye. Berxwedana Pêşmergeyên Mahabadê, serhildana Şêx Seîd û feqiyên niştimanperwer, xwebexşiya Ehmedê Xanî ya ji bo kurdî û Kurdistanê, nakokiya axa û mîrên Komara Mahabadê ji hêla Jan Dost bi awayekî serkeftî hatine honandin.



R08-9

# Mesrûr Barzanî bo çareseriya qeyranê di dewrê de ye

**Mustafa Turan**

Wek tê zanîn li Rojhilata Navîn kaoseke mezin a siyasî û civakî berdewam e û Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) jî di heman demê de bi DAIŞ'ê re li eniyeke berfireh têdikoşe. Tevî vê mijara hilbijartina serokatiya herêmê jî xendeqek xist nava siyasetê. Tê gotin ku heger RHK qeyrana heyî bi aştiyane çareser neke wê planên serxwebûnê jî derbeyeke giran bixwe. Herçiqas bo ku maveya serokatiya Barzanî 2 salên din bidome biryar hatibe stendin jî di gelek mijarên ku dahatuya welat eleqeder dikin de lihevnekirineke balkêş didome. Herwiha bandora hêzên derve jî li ser van mijaran dibe û çaverê ye ku ew rewş di dahatuyê de pirsgirêkên mezin derxe ber Kurdistanê. Fikar ev e ku pêknehatina yekîtiya navxweyî rêz û prestîja di derheqê kurdan de têk bibe

Rêvebirê PDK'ê û Rawêjkarê Giştî yê Asayîşa Kurdistanê Mesrûr Barzanî ku bi nêzikahiya ku hemû pirsgirêk bi konsensûseke fireh bêne çareserkirin tevdigere, bi partiyên derveyî parlemenê û nûnerên kêmnetewan re li hev civiya. Derdorên ku Barzanî pê re hi hev rûnişt didin zanîn ku divê hilbijartina serokatiya herêmê ji aliyê gel ve bê kirin û bo çareseriya pirsgirêkan jî gotinên wan jî li ber çavan bêne girtin.

Pirsgirêkên ku li ser ûsila hilbijartina serokatiyê hatibûn destpêbûn lê bingeha xwe ji bandora hêzên herêmê ya li ser siyaseta kurd digire dibe sedem ku di hevrikiya desthilatiyê de dînamîkên netewî paşguh bêne kirin û ew jî di nava raya giştî de dibe sedema nerazîbûneke mezin. Herçiqas bi hewldanên kesên ku di siyaseta kurd de wek aqilmend tên zanîn û beşdariya dîplomatên rojavayî gelek teşebbûs bo çareseriyê hatibin kirin jî mesafeya di navbera Hewlêr û Silimaniye'yê de kurt nabe û di mijarên ku lihevkirin pêk hatî de jî bi hev baweriyek pêk nayê.

Şirove ev e ku helwesta YNK û Goranê ya herêmî û di bin bandora Îranê de û nizikahiya ku di demeke ku PDK desthilate de ji aliyê herdû partiyan ve tê nîşandan. Herwiha ew nêzikahî jî dikare rê li ber serxwebûnê bigire û çeverê ye ku ew rewş bibe sedem ku kurd ji gelek fersendan bê sûd bimînin û dahatuya nêzîk de bi pirsgirêkên mezintirîn re rû bi rû bimînin. Li aliyê din tê gotin ku di YNK ku demeke dirêj e di bin bandora Îranê de ye kesên wek Kosret Resûl û Berhem Salih ji rewşê aciz in û di nava hewldanên avakirina partiyeke nû de ne. Herwiha geşedan û xwepêşandanên ku bi mebesta nelirêtiya li herêmên ku Goran birêve dibe pêk hatî jî nîşane ye ku ew partî jî di bin qeyraneke din de ye.

Herçiqas ku di warê bihêzbûna leşkerî û sayasî de kurd xwedî asteke bi avantajbin jî di warê hevsengiyên herêmî de ew her di navbeyna mîhwerên 'Rojava' û 'Şîa' de dimînin û yekgirtinekê pêk nîn in. Herwiha di demên bi qeyran de jî li gorî vê mîhwerê cihê xwe nîşan didin û li gor pêvçûna di navbera vê mîhwerê de li hemberî hev jî seknê nîşan didin. Ew rastî jî di warê yekîtiya newî de wek xetereyeke mezin li ber Kurdistanê ye û hêza wê rewşê jî dikare destkeftiyên kurdan ên civakî û siyasî ji holê rake.

Herwiha yekgirtin û yekarebûna Pêşmerge ya li eniyan û operasyonên serekftî jî têrî nêzikkirina bêşên siyasetê nake. Helbet zêdebûna fikarên kurdan tenê ne qeyrana di nava siyaseta Başûr de ye. Li Bakûr jî PKK û Tirkiye dest bi şerekî dijwar kirin. Li Rojava egeriya ku Tirkiye beşdarî operasyona dij DAIŞ'ê bibe heye û dîsa egeriyeke mezin li ser berdewamkirina nezelaliya Rojava heye.





## Li RHK'ê hêvî nezelalî bi hev reye

Li gor çavdêrên siyasî sedema rasteqîn a qeyrana li RHK'ê bingeha xwe ji bandora pêvçûnên li herêmê ya li ser siyaseta Kurdistanê distîne. Ji ber rewşa herêmê û talûkeya rûdana qeyranên nû, bikaranîna temayûl û yasayên herêmê jî terî nake û bi gelemperî rewşa heyî berdewamiya serokatiya Mesûd Barzanî ferz dike û di warê leşkerî, siyasî û dîplomasiyê de jî ew ferzkirin bêhtir xwe dide xuyakirin. Li gorî çavdêrên siyasî divê ew rastî bê dîtin û divê neyê ji bîrkirin ku li gelek welatan di demên awarte û demên şer de hiqûq û yasayên taybet hatine bikaranîn û li gorî berjewendiyên netewî qadên ku xwedî bandoreke mezin in bêne parastin û li gor wê bê tevgerîn. Herwiha li gor vê nezikahiyê di demeke ku dewletbûn li ser maseyê ye, di warê siyasî û abaroî de neçarbûna Bexda'yê li holê ye û daxwaza veqetînê tê kirin divê ji hemû formalîteyên ku van amadekariyan têk bibe dûr bê sekinîn û ew weke hessasiyeteke makezagonî neyê nirxandin.

Dîsa li gor nirxên çavdêrên siyasî, meseleya awareyên ku piştî şer rû da, nedana mûçeya herêmê ya ji aliyê hikûmeta navendî ve, maliyta hilbijartinan a ku wê bandorê li ser destheqê Pêşmerge bike û bibe sedem ku ew operasyonên bihêztir pêk neyên, destkeftiyên ku li qada dîplomasiya navnetewî ji aliyê Barzanî ve derketine holê xalên girîng in li ber siyaseta kurd û heke qeyranên ku bi bandora hêzên derveyî Kurdistanê rû didin neyên çareserkirin, ew hemû mijar wê bê çareserî bimînin û wê kurd neçar bibin ku di van qonaxan de ji nû ve berdêlan bidin û her wiha wê kurdistan ziyaneke mezin ji vê bigire.

Di rewşa heyî de, her çiqas ku YNK, Goran û partiyên îslamî bo ku Barzanî du salên din pêwira xwe bidomîne li hev kiribin jî, daxwazên wan ên bi rengê ku divên bila serok ne ji aliyê gel ve lê ji aliyê parlemenê ve bê hilbijartin, gelek selahiyetên serokatiyê yên weke 'serfermandariyê' bêne rawestandin nîşan dide ku qeyran bi tevahî nehatiye çareserkirin lê hatiye taloqkirin. Herwiha nîqaşkirina van mijaran û danûstandinên ku di dema qeyrana heyî de didomin jî nîşan dide ku siyaseta kurd ji midaxaleyên derve re vekirî ye. Lê belê ew hemû mijar meseleyên lijneya ku bo nivîsandina zagona nû ve hatibû sazkirin in. Dibûya ew nîqaş û danûstandin ji aliyê vê lijneyê ve bihatana kirin.

## Mela Elî: Em rastî fikra terorî ya YNK û Goran hatin

Herwiha şandeya PDK'ê piştî van civînan lihevrûniştinek jî li gel serokê Bizotneweyî Îslamî Îrfan Mela Elî pêk anî. Di daxuyaniya ku piştî civînê hate ragihandin de Barzanî diyar kir kû hevdîtin di atmosfereke baş de derbas bûye. Li aliyê din Mela Elî jî da zanîn ku ew jî piştrastin ku hilbijartina serokê herêmê ji aliyê gel ve bê kirin û bo vê jî rastî fikra terorî ya YNK û Goran hatine. Elî wiha got, "Heke ku YNK, Goran û Yekgurtî Îslamî ji bo vê helwesta xwe ji me lêborînê nexwezin emê xebatên parlementoyê protesto bikin." Mela Elî da zanîn ku tu kes ne li hemberî serokatiya Barzanî ye û nîqaş li ser rêbazên hilbijartinê têne kirin.





## Parlementerê Goran: Siyasetmedar ji ramana şoreşê qut nebûne

Parlementerê berê yê Goran Latîf Mistefa di derheqê mijarên ku dibin sedema qeyranê de nêrînên xwe bi BasNûçe're parvekir û da zanîn ku sedema pirsgirêkan ji neheqî an jî ji mafdariya tu partiyan pêk nayê û sedema pirsgirêkan ev e ku siyasetmedar ji perspektîfa şoreşa 91'an paş ve nehatine û li gor mercên nû xwe rewîze nekirine. Mistefa anî ziman ku siyasetmedar bi nêzikahiyeke leşkerî ya dema hebûna netewî nêzikî meseleyê dibin û di rastiyê de ti pirsgirêkên ku neyên çereserkirin nîn in. Mistefa ku qeyrana siyasî ya Kurdistanê da ber ya Tirkiye'yê anî ziman ku pirsgirêkên tuneyî li ber çavên gel weke ku pirsgirêk hebe tê nîşandan û qeyrana li RHK'ê wek ya Tirkiye'yê ji midaxaleyên derve re hatiye vekirin û ew jî dibe sedema xetereyeke netewî. Mistefa got ku heke mesele bi awayekî nerm neyê çareserkirin wê pirsgirêkên heyî bigîhîjin asteke talûke. Mistefa amaje bi yekê jî kir ku meseleyên heyî bandoreke neyênî li ser motîvasyona Pêşmerge jî dike û wiha domant, "Ew neheqiyeke ku ji aliyê siyasiyan ve li Kurdistanê tê kirin. Her çiqas ku piraniya wan di destê partiyan de be jî Pêşmerge heta ku ji dest tê dixwaze ji van pirsgirêkan dûr bisekine. Lê ew mesele qapasîteya şerkirina Pêşmerge jî dixe xetereyê. Bêyî pirsgirêkên ku di dema şerê bi DAIŞ'ê re tê kirin yên weke xizmetên civakî, aborî hemû pirsgirêkên din çêkirîne. Hemû partiyan di mijara dirêjkirina maweya Birêz Barzanî de lihevkirin lê ew ji aliyê kesên berpirs ve bi awayekî fermî nehat ragihandin. Ez dikarim bêjim ku di warê mijarê de hîn ti lihevkirinên zelal pêk nehatine."

## Ferhan Cewher: Bila rêbaza hilbijartinê gel zelal bike

Parlementerê PDK'ê Ferhan Cewher ku di derheqê geşedanan de agahî dan BasNûçe'ê jî da zanin ku YNK û Goran di mijara hilbijartina serokatiyê de nêzikahiya erênî bo hilbijartina Barzanî nîşan deye û li hemberî vê PDK'ê jî ji won re ragihandiye ku mimkûn e ku niqaş li ser kêmkirina selahiyetên serokê herêmê, yên parlemento û hikûmetê bêne kirin. Cewher amaje pê kir ku mijara ku terefan lihev nekirine rêbaza hilbijartina serokatiyê ye û YNK, Goran û Komele hilbijartina li parlementoyê bi israr dixwazin û PDK jî diwaze ku êlam hilbijartina serokatiyê ji aliyê gel ve bê kirin. Cewher wiha domkir, "Em weke PDK'ê van pêşniyazan dikin: bila hilbijartina serok piştî 6 mehan ji gel bê pirsîn û gel bi riya referandûmê vê biryarê bistîne. Weke ku li hemû cîhanê dibe, ger ku gel çi biryarê dide bila ew biryar bê girtin. Divê em wek partî vê berpirsiyariyê bi cîh bînin. Divê em pirsgirêk bi çareseriyên mayînde bêne çareserkirin. Di derheqê vê pêşniyazê de heta niha tu tiştek negotine. Lê bi ya min ewê di nava çend rojan de vê pêşniyazê bi awayekî erênî biperjirînin."

## YNK projeya YNK'yiyan qebûl nake

Li aliyê din Cîgirê Sekreterê Giştî yê YNK'ê Dr. Berhem Salih ragihand ku wî projeyeke di derheqê dirêjkirina maweya Barzanî, ji nû ve xêzkirina herêmên ku nîqaş li ser tên kirin, civandina Pêşmerge ya di bin heman banê de û çend mijarên din de amade kiriye û tevî ku PDK'ê ew proje bo nirxandinê pejirandiye jî YNK wê projeyê bo nirxandinê jî nagire rojeva xwe.

## Serokê Şîa Gazalî: Bila kurd veqetin

Serokê Koma Milîşeyên Şîa Eshab Ehlî Heq ku di 2006'an de di bin banê Artêşa Qudsê ya Îranê de hatibû damezirandin Şêx Qeys Xezalî, angaşt ku piraniya Iraqiyan wisa bawer dikin ku RHK'ê ji dahatên Iraqê pareke mezin werdigire û got: "Ji bo çareseriyê ya divê RHK'ê ji Iraqê veqete, yan jî divê pergala rêveberiya Iraqê bibe konfederalîzm. Xezalî diyar kir ku kurd jî ji pergala federalî ne razî ne, lewre bi vê pergalê dahatên Iraqê bêhevsengî têne belavkirin û ji ber vê yekê jî divê ya kurd veqetin yan jî pergal bibe konfederalî. Ev koma şîa, taybet di dema Malîkî de ji alî Bexdayê ve hatibû piştgîrkirin.

Ji alî din ve hemweletiyên ku ji gendelî û bêdadiya belavkirina dahatê bêzar bûne, şeva îniyê li paytext Bexda û Diyalayê daketin kolanan û li dij hikûmetê xwepêşandan. Her çiqas di xwepêşandanê li Diyalayê tu pevçûn rû nedin jî di xwepêşandanên Bexdayê de di nav xwepêşander û hêzên asayixê de pevçûnên dijwar qewimîn. Hate ragihandin ku di van pevçûnên ku bûyerên mirinê jî rû dane de nêzîkî 100 kes brîndar bûne û nêzîkî 200 xwepêşander jî hatine destgîrkirin.

## Pêşmerge dîsa dest bi operasyonan kir

Piştî demeke bêdeng Hêzên Pêşmerge li Kerkûk û Selaheddînê li dij DAIŞ'ê dîsa dest bi operasyonên berfireh kir. Di van operasyonên ku li Dakûka navçeya Kerkûkê û Tûzxurmatûya navçeya Selaheddînê hatin destpêkirin de, hate ragihandin ku gundê Elbûnecm ku baregeha herî grîng a herêmê ya DAIŞ'ê ye jî di nav de, nêzîkî 11 gund ji DAIŞ'ê hatine paqijkirin. Fermandarê Eniya Kerkûkê Westa Resûl di daxuyaniya agahdarkirina operasyonê de da zanîn ku Pêşmerge ji pevçûnan bêtir, ji kemînên bombeyî yên ku DAIŞ'iyan li dû xwe hiştine di metirsiyê de ye û ji ber vê yekê jî ew operasyonan bi hendazeyî dimeşînin. Resûl da zanîn ku ev operasyonên ku bi hêzên asmanî yên hevpeymaniyê ve bi hemahengî têne meşandin, moralê DAIŞ'iyan ku jixwe xerab bû, hin xerabtir kirî ye û ragihand ku di çarçoveya plansaziyê de eger ew pêwîst bibînin ew ê operasyonan bidomînin. Di derbarê van operasyonên ku hejmarek zêde endamên DAIŞ'ê hatine kuştin. Sekreterê Giştî yê PDSK'ê û Fermandarê Giştî yê Eniya Kerkûkê Mihemed Hecî Mehmûd, Wezîrê Pêşmerge Seyid Qadir, Cîgirê Serokê Herêmê Kosret Resûl Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî agahdar kirin, dan zanîn ku operasyon bi serkeftî bi encam bûne.

## Mesûd Barzanî: Nîqaş bandorê li Pêşmerge nakin

Li aliyê din Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî tevî qeyrana siyasî û desptêkirina operasyona ji nû ve ya li Kerkûkê xebatên xwe yên dîplomatîk bê navber didomîne. Barzanî di hefteya borî de bi Wezîrê Derve Yê Norwecê Borge brende, Wezîrê Bergiriyê İne Marie Eriksen Söreide û şandeyeke Norwecî re hevdîtinek pêk anî. Di hevdîtinê de Barzanî da zanîn ku Pêşmerge li hemberî 'terorîzmê' têkoşîneke mezin didomîne û alîkariya Norwecê jî di vê qonaxê de xwedî giraniyê ne û wiha domand, "Wê şerê Pêşmerge yê bi terorê re şerê rûmetê ye û wê bidome. Piştgirî alîkariya Norwecê jî di vê qonaxê de bo me pir girîng in."

Herwiha Barzanî di derbarê hilbijartina serokatiyê de jî da zanîn ku RHK di demeke bi zehmet re derbas dibe û di vê rewşa awarte de meseleya serokatiyê ne xwedî qonaxeke awarte ye û ew nîqaş nikarin bandorê li ser Pêşmerge bikin û wê nikaribin jî. Barzanî di derbarê pêvçûnên ku ji nû ve li Bakûr diqewimin de jî wiha got: Me wek RHK'ê berpirsiyariya xwe ya di vê mijarê de bi cûh anî. Heke ku pêwîst be em dikarin ji nû ve wê perpirsiyariyê bigirin ser xwe û bi cîh bînin." Herwiha di hevdîtinê de li ser navê Şandeya Norwêcî Wezîra derve Brende jî axaftinek kir û ragihand ku ewê piştgiriya RHK'ê bidomînin.

## Hewldanên lihevkirinê

Li Başûr li aliyekî hevdîtin û hewldanên nûnerên 5 partiyên ku di parlemenê de ne didomin û li aliyê din jî PDK diyar dike ku partiyên derveyî parlemenê jî di warê çareseriya pirsgirêkan de xwedî gotin e û bi wan re li hev rûdine. Endamê Politburoya PDK û Rawêjkarê Ajansa Asayîşê Mesrûr Barzanî piştî ku YNK, Goran û Kemeleyî İslamî di warê çareserkirina pirsgirêkan de nêzikahiyên nerm nîşan nedan bi partiyên dereveyî parlementoyê û Yekgurtî Îslamî re li hev rûnişt. Barzanî bi beşdariya şandeyekê bi hemû partiyên derveyî parlemenê re li ser mijaran nîqiş kirin û piştî hevdîtinan raya giştî bi saya çapemeniyê ji civînan hate hayîdarkirin.

Di daxûyaniya çapemeniyê ya ku piştî hevdîtina bi Serokê Partiya Demokratîk a Sosyalîzmê (PSDK) Mihemedê Hecî Mahmûd re pêk hat de Barzanî da zanîn ku qeyrana heyî hîn nebûye sedema birêvebirina demokratîk lê hin kes hewl didin ku îstiqrara welêt têk bibin lê tevî her tiştî jî wê serokê RHK'ê Mesûd barzanî li ser karê xwe be. Hecî Mahmûd jî da zanîn ku ew di bin bandora ti kesî de namînin û nêrînên xwe awayekî vekirî tînin ziman û got ku qeşran bi diyalogê bê çareserkirin divê aliyên beşdarvan zêde bibin û wê hewldanên wan jî bidomin. Barzanî û Hecî Mahmûd diyar kirin ku herdû jî di mijara hilbijartina serok ya ji aliyê gel ve xwedî heman nêzikahiyê ne.

Barzanî di daxuyaniya çapemeniyê ya ku piştî hevdîtina bi Sekreterê Giştî yê Yekgurtî Îslamî Mihemmed Emîn Ferec de pêk de jî diyar kir ku nêzikahiya PDK'ê ya di warê çareserkirina peyranê de vekirî ye û ew dixwazin ku di çareserkirina pirsgirêkan de rêbazên demokratîk bêne bikaranîn û nûnerên kêmnetewan jî beşdarî lihevrûniştinên ku di navbera 5 partiyên di parlemenê de pêk tên bibin. Ferec jî da zanîn ku bo çereseriyê wê hewldanên wan ên diyalogê dê bidomin û wiha got, "Em jî dixwazin ku nûnerên kêmnetewan jî beşdarî van civînan bibin."



# Rojava: Şerê herêma tampon destpêkir!

**Mehmet Salih Batırhan**

Komara Tirkiye'yê ya ku ev zêditirî sê sala ye bi 600 kîlometre sînorê xwe yê li başûr bi DAIŞ'ê re cîrantî dikir li hember DAIŞ'ê dest bi operasyonan kir û beşdarî hêza hevpeymaniyê bû. Digel van operasyonan jî peywendiya Tirkiye'yê bi rêxistinên tûndrew êı îslamî re di raya giştî ya cihanê de tê nîqaşkirin. Her wiha tiffaqa Tirkiye'yê ya li ser vebûna Balafirxaneya Leşkerî ya Încîrlîkê jî di rojevê de ye. Rayedarên dewleta Tirkiye'yê di her daxuyaniya xwe de eşkere dikin ku hewldana wan a li Sûriye'yê û avakirina "herêma ewle" ango herêma tampon ew ê li ne hember destkftiyên kurdan jî be. Perwerdekirina milîşeyên tirkmen ên li derdora Heleb û Ezazê û her wiha şandina wan a ber bi Cerablûsê dide eşkerekirin ku Tirkiye'yê bi operasyonên hewayî û li jêr zemîna bejayî dest bi kar kiriye û ewê hin komên îslamî di navbera bajarê Kobanê û Efrînê de bi cih bike û ewê geşedanên nû rû bidin.

Herî dawî jî hat zanîn ku endamên Ahrarû Şamê ji hêla Tirkiye'yê ve tên perwerdekirin û ewê di derdora xeta Cerablûs û Merayê de bêne bi cihkirin. Beriya bi hefteyekê jî El Nûsra ya bi ser El Kaîdeyê ve ji derdora Cerablûs û Ezazê vekşiya û komên tirkmen û Ahrarû Şam li herêmê bi cih bûn. Li gor pisporên Rojhilata Navîn û tehlîlgerên siyasî jî, Tirkiye ji ber nerazîbûna destkeftiyên kurdan polîtîkaya xwe ya Sûriye'yê guhertiye. Di gel destêwerdana Tirkiye ya li herêmê dîplomasiya nevdewletî ya ji bo çarenûsa krîza Surîye'yê jî berdewam dike. Rayedarên DYA û Rûsya'yê ji bo çareseriya krîza Suriyê'yê li hev kom dibin. Her wiha diyar e ku ewê di demeke nêz de li Sûriye'yê geşedanên nû pêk werin. Di raya giştî ya cihanê de dîplomasî li dar e û li bejayî ya Sûriye'yê jî şerê dijwar li dar e. Piştî vekişîna Cebhetul Nûsrayê ya ji Ezaz û Cerablusê DAIŞ'ê êrîşî wê herêmê kir û xwest ew xet nekeve deste miliîşeyên tirkmen û rêxistina Ahrarû Şamê. Li hêla din YPG'e jî li hember operasyonên Tirkiye'yê derdikeve û eşkere dike ku ew ê xeta Cerablûsê kontrol bike wan rêxistin û komên çekdar ji wê xetê derxe.

## Koça ji Rojava didome

Li hêla din jî bi destpêkirina şer û pevçûnên dijwar û wêranbûna bajarên Rojava koçberiya xelkê ya ji Rojava jî berdewam dike. Digel bedelên mezin rayedarên siyasî heta niha polîtikayeke navendî ji bo kurdan duristnekirine û bi rejima Esed û komên tûndrew re hevkariyê dikin. Di warê parastina Rojava de destûra wê yekê nadin ku Pêşmergeyên Rojavayê Kurdistanê derbasî Rojava bibin parastina xelkê bikin û di warê siyasî jî de ji hevgirtin û yekgirtina partiyên kurdan qebûl nakin û bi komên tûndrew re di nava danûstendinan dene. Ev yek jî hem ewlehiya xelkê û hem jî destkeftiyan dixe metirsiyê. Herî dawî hat zanîn ku erîşa dawî ya li ser Kobanê, bi destê çekdarên Burkan El Feradê ve hatibû kirin. Heman rêxistin niha jî li hember biryarên PYD'ê û YPG' ê radiweste û dixwaze Girêspî nekeve bin rêveberiya Rojava û bajar weke berê bi ser Raqqayê ve be.

## "Herêma tampon" û bereyên Rojava

DAIŞ'a bi êrîşên hêzên kurd li gelek herêman şikset xwar piştî demeke din dîsa dest bi êrîşan kir. Herî dawî DAIŞ'ê êrîşî xeta Cerablûs û Mariyê kir. Li gor agahiyên hatine stendin, şer li devera Mariyê berdewam e. Li gorî çavkaniyên xwecihî, li devera Mariya'yê li ser sînorê Rojava û Bakurê Kurdistanê ku dikeve navbera Efrîn û Kobanê yên Rojavayê Kurdistanê, şerekî dijwar diqewime. Şer li bajarokê Mariya li bakurê Helebê di navbera DAIŞ'ê û Ahrarû Şamê de berdewam dike. Her du alî dixwazin gund û bajarokên derdorê kontrol bikin. Beriya bi hefteyekê El Nûsra ji herêma Cerablûs Mariyê vekşiya bû û Ahrarû Şam li herêmê bi cih bibû. Herwiha doh êvarê jî Ahrarû Şamê di daxuyaniyekê de eşkere kir ku bajarê Ezazê yê di navbera Efrîn û Kobanî de weke herêmeke serbazî ragihandiye. Ahrarû Şamê di daxuyaniya xwe de jî ji xelkê bajêr xwestiye ku çekên di destê xwe de radestî baregehên wê rêxistinê bikin.

## "Ewê herêma tampon neyê avakirin"

Akademîsyen Refîk Silêman jî li ser rûdanên dawî û "herêma tampon" a ku Tirkiye dixwaze li xeta Cerablûs û Ezazê ava bike rawestiya û ji BasNûçe'yê re axivî. Silêman da zanîn ku Komara Tirkiye'yê razî nîne ku kurd li Rojava bibin xwedî otorîte û hokara hewldan û operasyonên Tirkiyê ew ê ku destkeftiyên kurdan têk bibe û li Sûriye'yê bibî xwedî otorîte û ji ser rêxistinên îslamî destêwerdana siyasî û çalaki li Sûriye'yê bike. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Silêmanî da zanîn ku hevpeymanî jî ji hewldanên Tirkiye'yê yê li hember kurdan aciz e û her çend Tirkiye bixwaze hêza kurdan têk biçe jî DYA'yê destûra vê yekê nade û ew ê di piştevaniya PYD'ê de berdewam bin.

Her wiha Silêmanî li ser dîplomasiya li ser krîza Sûriyê jî rawestiya û daxuyand ku DYA'yê û Rûsya'yê gihiştine wê encamê ku DAIŞ'ê ji holê rakin û krîza li Sûriye û Iraqê çareser bikin. Li gel vê yekê Silêmanî eşkere jî kir ku DYA'yê êdî ne rejima Esed DAIŞ'ê weke xetere dibîne û bi Tirkiyê jî daye qebûl kirin ku li hember DAIŞ'ê şer bike. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Silêman ragihand ku her çend Tirkiye hewl bide û bi israr jî be ew ê "herêma tampon" ava nebe.

## Tirkiye jî dest bi lêdana DAIŞ'ê kir

Li hêla din Wezareta Karê Derve ya Tirkiye jî eşkere kir ku balafirên wan ê şer di 28'ê mehê de li DAIŞ'ê dane. Wezareta Derve ya Tirkiye'yê di derbarê êrişên Tirkiye'yê yên li dijî DAIŞê de daxuyaniyek da. Di daxuyaniya Wezareta Derve ya Tirkiyeyê de wiha hat gotin: "Balafirên me yên şerî ji duhî şev ve li gel hêzên hevpeymaniya navdewletî li Sûriyeyê li dijî DAIŞê dest bi operasyoanên hevbeş kirin."Her wiha di daxuyaniyê de amaje bi wê yekê jî hatiye kirin ku operasyon di çerçoveya rêkeftina bi DYA'yê re hatine kirin û dê operasyon berdewam bikin. Her wiha di daxuyaniyê de wiha hatiye gotin; "Tirkiye ji bo têkbirina DAIŞê ku ji sala 2013an ve daxistiye di nav liseya terorê de, dê bi awayakî aktîf piştgiriya xwe bide hevpeyamniya navdewletî."

## Li Girêspî aloziya Burkan el Ferad û PYD'ê

Li hêla din Hêza bi navê Lîwaya Suwar El Reqa ku girêdayî Burkan el Feradê ye, biryara girêdana herêma Girêsipî bi ser bajarê Kobanê ya Rojava ve red kir. Li gor zanyariyên hatine bi dest xistin, Lîwaya Suwar El Reqa ya ser Burkana Feradê ve ku bi xwe bi ser Artêşa Azad a Sûriye'yê ye û bi Yekîneyên Paratsina Gel YPG'ê re li Kobanê û Girêspî li dijî endamên DAIŞ'ê şer kiriye, li dijî biryara Partiya Yekîtiya Demokratîk PYD'ê derdikeve.



Li gor agahiyan, Fermandariya Giştî ya Lîwaya Suwar El Reqa red kir ku herêma Girêspî bi rêveberiya bajarê Kobanê ve û bajarokê Silûkê jî bi bajarê Serêkaniyê ya girêdayî kantona Cizîrê ve bên girêdan. Fermandariya Suwar El Reqayê di daxuyaniyeke nivîskî de ragihand ku ew razî nabin Girêspî têkeve ser bajarê Kobanê û ew dever dê her girêdayî parêzegha Reqqayê bimînin. Her wiha di daxuyaniyê de hat gotin, ew guhertinên sînorên rêveberiyê li wê deverê red dikin. Piştî rizgarkirina Girêspî Meclîsa rêveberiya xwecihî li Girêspî, biryar dabû ku devera Girêspî bi Kobanê ya Rojava ve were girêdan. Lîwaya Suwar El Reqa yek ji komên çekdar ên Artêşa Azad a Sûriye'yê ye û her wiha yek ji lîwayên ser bi odeya Burkan El Feradê ve ye ku li kêleka şervanên YPG'ê di şerê li dijî DAIŞ'ê de li Kobanê û Girêspî beşdar bibû.



Hat zanîn ku endamên Ahrarû Şamê ji hêla Tirkiye'yê ve tên perwerdekirin û ewê di derdora xeta Cerablûs û Merayê de bêne bi cihkirin. Beriya bi hefteyekê jî El Nûsraya bi ser El Kaîdeyê ve ji derdora Cerablûs û Ezazê vekşiya û komên tirkmen û Ahrarû Şam li herêmê bi cih bûn.

## YPG'ê û DAIŞ'ê dîl bi hev re guhertin

Li hêla din YPG'ê û DAIŞ'ê bi navbeynkariya serokên çend eşîran li hev kir û li gor vê lihevkirinê li derdora Hesekê dîl bi hev re guhertin.Li gor zanyariyan proseya bihevguhertina dîlên şer di navbera Yekîneyên Parastina Gel (YPG) û DAIŞ'ê pêk hat. Her wiha hat zanîn ku guhertina dîlên her du aliyan li gundewarên derdora Hesekê û bi navbenkariya mezinên eşîrên ereb û kurdan pêk hatiye. Li gor agahiyan, di encama vê proseyê de 3 çekdarên DAIŞê ku 2 ji wan ji Sûrîye'yê ne û yê sêyem jî biyanî ye, li hember de jî 3 şervanên YPG'ê ku di destê çekdarên DAIŞ'ê dîl bûn, hatin berdan. Her wiha, yek ji wan 3 şervanên YPG'ê ku DAIŞ'ê di şer û pevçûnên li Hesekê dîl girtibûn, serkirdeyekî leşkerî ye. Li ser torên civakî û hinek dezgehên ragihandinî jî çend wêneyên proseya guhertina dîlan di navbera DIAŞ û YPG'ê de hatine belavkirin.Heta niha bi awayekê fermî amarên dîlên her du aliyan nehatiye ragihandin.

## Rojava vala dibe!

Digel kêmbûna şer û pevçûnan rizgarbûna gelekî bajarên Rojava jî xelkê ji Rojava koçber bibû û li Başûr û Bakurê Kurdistanê bibûn penaber venagerin Rojava û ew kesên li Rojava ma bin jî cih û warê xwe dihêlin û berê xwe didin sirgûnê. Li ser hemû malen Qamişloyê "Ji bo firtotinê ye" dinivîse û bi hezaran xelk cih û warê di cih de dihêlin û diçin Ewrûpayê. Osman Berkeleyê xelkê Kobanê ku niha li Viyena Avustûrya'yê ye sedema koçberiya xwe û valabûna Rojava ji BasNûçe'yê re eşkere kir. Berkele eşkere kir ku dema DAIŞ'ê êrîşî gundê wan ê bi ser Kobanê ve bû ew jî gundê xwe derketin û hatin Bakur û ji bo çend mehan li Bakur man.

## "Em berê xwe didin mirinê"

Her wiha Berkele da zanîn ku piştî ku gundê wan û Kobanê ji DAIŞ'ê hat stendin ew jî vegeriyan gundên xwe. Berkele amaje bi wê yekê jî kir ku piştî ew vegeriyan gundên xwe ew bi pêkutiyên PYD'ê re rû bir û mane û PYD'ê bac û leşkeri li ser wan ferz kiriye û zulm li wan kiriye. Di berdewamiya axaftina xwe jî de Berkele li ser proseya koçberiya xwe ya ber bi Ewrûpayê jî rawestiya û wiha got: "Em 12 kes in. Me mala xwe û her tiştê xwe bi cih hişt û em çûn. Bi keştiyan bi rojan em li ser deryayê man. Me berê xwe da mirine. Me kî dixwaze welatê xwe bihêle û berê xwe bide mirinê? Em ji ber birayên xwe reviyan." Her wiha Berkele amaje bi wê yekê jî kir ku ew li Ewrûpayê jî tûşî gelek bobelatan dibin û tu cih tüneye kul ê bi cih bibin û bimînin.

## Beriya Cenevre III dîplomasiya DYA û Rusya

Nûnerê Polîtîkayên Sûriye'yê yê DYA'yê yê Michael Ratney, ji bo çeresekirina krîza Suriyê û rageşiya çareserkirina peywendiyên DYA'yê û Rusya'yê ew ê diçe Rûsya'yê. Hat zanîn ku ew ê Nûnerê Polîtîkayên Sûriye'yê yê DYA'yê yê Michael Ratney, bi hevkarê xwe Wezîrê Karê Derve yê Rusya'yê bi Mihail Bogdanov re bicive. Her wiha rayedarên DYA'yê eşkere dikin ku hevdîtina wan a bi Rusya'yê re bi mebesta çareseriya krîza Sûriye'yê û beriya civîna Cenevreyê teref li hev kom dibin.

Her wiha hat zanîn ku piştî civina rayedaran ew ê Ratney derbasî Sidû Erebîstanê bibe û piştî danûstendinên bi rayedarên bi wî welatî re ew ê di 2'yê meha îlonê de derbasî Cenevê bibe û bi Nûnerê NY'yê yê Polîtkayên Sûriye'yê bi Staffan de Mistura re bicive.Li gor agahiyên di medyayê de hene ew ê civînên Cenevre 3 dest pê bikin. Di sala 2012'an de Konferanda Cenevre I pêk hatibû û di civînê tu encam nehatibûn stendin. Herî dawî di zivistana 2014'an jî de Konferansa Cenevre II pêk hatibû û digel welatên endamên NY, welatên weke Tirkiye, Iraq, Kuweyt, Qetar jî beşdarî civînan bibûn. Niha jî bendewarî heye ku di meha îlonê de Konferansa Cenevre III pêk were û krîza Sûriyê bê çareserkirin.

## YPG xwe ji bo rizgarkirina Cerablûsê amade dike

Bajarokê Marî bi qasî 35 km ji bakurê Helebê dûr e û herwiha 25 km ji sînorê Tirkiyeyê jî dûr e û ketiye navbera her du bajarên Efrîn û Kobanê yên Rojavayê Kurdistanê. Deverên di navbera Efrîn û Kobanê de, di kontrola çekdarên DAIŞ'ê, El Nusra û komên girêdayî Artêşa Azad a Sûriye'yê de ne. Li wê herêma Rojava, Tirkiye hewl dide bi piştgîriya DYA'yê herêmeke tampon ava bike û Tirkiye'yê di derbarê wê mijarê de bi rayedarên DYA'yê re di nava danûstandinê de ye.Tirkiye bi aşkere ragihandiye, ew ditirsin ku kurd hewl bidin tevahiya sînorê Sûriye'yê bi Tirkiyeyê re kontrol bikin û axa di bin desthilatdariya xwe de bikin yek û herêmeke kurdî pêk bînin. Rayedarên Tirkiyeyê çendîn caran tekez kirine, ku ew rê nadin dewleteke din a kurdî li Rojavayê Kurdistanê pêk were. Her wiha Fermandarê Giştî yê YPG'ê Sîpan Hemo jî daxuyand ku ew ê xeta Cerablûs Ezazê jî rizgar bikin û ew ê planên Tirkiyê vala derxînin. Hat zanîn ku YPG jî xwe ji bo rizgarkirina xeta Cerablûsê amade dike.

Rojnameger Mihemed Roj li Efrînê ji BasNûçeyê re eşkere kir ku di navbera DAIŞ'ê û Ahrarû Şamê de li derdora Cerablûsê û gundewarên Ezazê de şer derketiye û DAIŞ dixwaze li wir bi cih bibe. Di berdewamiya axaftina xwe de Roj amaje bi wê yekê kir ku Ahrarû Şam bi piştgiriya komên tirkmen li hember DAIŞ'ê radiwestin û Tirikiye'yê jî li hember DAIŞ'ê piştgiriya van koman dike. Her wiha Roj bal kişand ser daxuyaniya Sîpan Hemo û tevgerên YPG'ê jî û da zanîn ku ew ê hêzên kurd jî di demeke kurd de di herêmê de cihê xwe bigrin û Cerablûsê kontrol bikin.Li hêla din êrîşên rêxistina Cebhet El-Nusrayê yên ser Efrînê jî berdewam dikin. Herî dawî gundê Dêwa yê navçeya Cindirêsê ya Efrînê ji hêla El Cebhet El Nûsrayê ve hat topbaran kirin.



Dr. Kemal Sîdo:

# Gelê Îsraîlê dostê kurd e

Kalê Badî

Rojhilata Navîn di nav dûkelekê de ye û di nav vê dûkelê de tiştê ku nayê dîtin siberoja kurd e. Di bin nedîtbariya dûkelê de ji bo kurdan fersend hene, lê belê helwestên kurd ji bo ev fersend baş bêne bikaranîn ne hêvîbar in. Qeyrana siyasî ya Başûr, nakokiyên navbera ENSK û TEV-DEM'ê û şerê ku li Bakur destpêkiriye, cihê metirsiyê ne û bi hev re têkildar in. Aktîvîst Dr. Kemal Sîdo di derbarê siyasetên navxweyî yên kurd û helwestên welatên cînar, nêzîkahiya dewlet û gelê Îsraîlê ya kurdan û DAIŞ'ê nêrînên xwe bi me re parve kir û got: "Îsraîl wek dewlet li gor berjewendiyên xwe nêzîkî mijara DAIŞ'ê bibe jî gelê cihû DAIŞ'ê wek dijmin û kurdan wek dostên xwe dibînin"




**'Wê dewleta tirk her asteng be'**

Li Rojhilata Navîn bersiva pirsa 'wê kêngê aramî bê? Ne diyar e. Piştî peydabûna xeteriya DAIŞ'ê her çiqas helwesta DYA'yê ya li dij Esad nerm bûbe jî, wisa xuya dike ku wê DYA di şerê li dij DAIŞ'ê de bi Esad re hevkariyê neke. Ji ber vê yekê jî di bejahiyê de hêviya xwe bi YPG'ê ve girêdide û ji alî din ve jî dixwaze Tirkiye'yê, bi hêza wê ya hewayî bi awayekî çalak beşdarî şerê li dij DAIŞ'ê bike. Bêguman bêdiliya Tirkiye'yê bi hevkariya DYA ya bi PYD'ê re têkildar e, lewre Tirkiye ji destpêkê ve li dij destkeftiyên kurdan hildiwestiya û piştî ketina Grêspî ev helwest gihîşt asteke wisa ku êdî bi aşkereyî YPG'ê ji DAIŞ'ê xetertir didît. Bêçarmayîna Tirkiye'yê ya ku ne rasterast be jî bi YPG'ê re hevkariyê bike, astengî û çewtiyên siyaseta Tirkiye'yê jî dide xuyakirin; lewre di şerê li dij DAIŞ'ê de bêyî dilê wê be jî, wê bi YPG ya ku wê wek organa PKK'ê dibîne hevkariyê bike. Serokê Beşa Rojhilata Navîn ya Rêxistina Mafê Mirov û Kêmnetewen a Navneteweyî Dr. Kemal Sîdo anî ziman ku bi destpêkirina êrîşên hewayî yên li dij PKK'ê re helwesta Tirkiye'yê diyar bûye û bi ser şerê li dij PKK'ê ve dixwest wisa bide xuyakirin ku ew mafdar e. Sîdo got; "Lê belê, ji ber ku em hemû dizanin ku di destpêka Pêvajoya Aştiyê de dewleta tirk ne dilpak bû, di pratîkê de geşedaneke nû pêk neanî û tenê xwest meseleyê dirêj bike, di vî şerî de berpirsyariya herî mezin a Recep Tayyip Erdoğan û hikûmeta AKP'ê ye. Ji ber vê yekê dixwazin sûcê vê berpirsyariya xwe texin stûyê kurdan û xwe mafdar bidine nîşandan. Di vê meseleyê de hêviya min ew e ku DYA vê meseleyê baş têbigihîje û fersendê nede destê Erdoğan ku eziyetê bide kurdan. Rast e, Erdoğan PKK'ê wek armanc nîşan dide, lê bele armanca wî hemû kurd in"


Dr. Kemal Sîdo

**'Egerî heye ku Tirkiye êrîşî Rojava bike'**

Dr. Kemal Sîdo nepenîtiya sedemên ji nû ve destpêkirina şerê PKK'ê û Tirkiye'yê destnîşan kir, nezelaliya 33 ciwanên li Pirsûsê û 2 polêsan nimûne nîşan da û dom kir: "Pêwîst bû parlamena Tirkiye'yê pêşniyaza HDP'ê ya ku dixwest ji bo zelalkirina van bûyeran lijneyek bê avakirin û ev lijne dest bi lêkolînan bike, qebûl bikira. Wê lijneyê dikaribû destên ku di pêkanîna van bûyeran de heye aşkere bikira. Divê PKK'ê ecele nekiribûya. Di hemû maweya pêvajoya çareseriyê de Erdoğan her li dij PKK'ê û Serokê wê Abdulah Öcalan û gelê kurd axaftinên dijber dikir û ev bûbû wek bernameyeke wî ya rûtîn. Lê belê, li gel van hemû neyênîtiyan jî divê PKK'ê bi aqilmendî tevbigeriya û ecele nekiribûya"

Sîdo, da zanîn ku Serokkomarê tirk Erdoğan aşkere gotiye ku 'Ew ê nehêlin li bakurê Sûriye'yê rêveberiyek wek ya bakurê Iraqê saz bibe û anî ziman ku ji ber vê feraseta dewleta tirk egerî heye Tirkiye bi hemû hêza xwe êrîşî YPG'ê bike. Sîdo diyar kir ku ew bawer nake ku kurd Efrîn û Kobanê bigihînin hev, lê belê ger ku dikaribin bigihînin hev, ev yek wê bibe serkeftineke dîrokî û wiha dom kir: "Wê Tirkiye bi her awayî hewl bide ku ev yek pêk neyê. Wê pere û çekan bide komên çekdar ên Sûriyeyî û tirkmenan û ew ê wan perwerde bike. Bi xebatên dîplomatîk jî wê hewl bide ku vê daxwaza xwe di raya navneteweyî de rewa bike." Sîdo bi mijarê re grêdayî helwesta aliyên kurd ên Rojava jî rexne kir û got: "Mixabin di vê mijarê de gellek aliyên kurd ku endamên mixalefetêne û bi taybetî Encûmena Niştimaniya Kurd a Sûriyeyê (ENKS), ya bêdeng in yan jî bi şêweyekê tevlî plana dewleta tirk dibin. PYD pir şaşiyên leşkerî û binpêkirina mafê mirovan dike, lê şaşiyên PYD'ê nabin sedem ku hin aliyên ENKS'ê li tenişta dewleta tirk û El Nusrayê cih bigirin û dijayetiya birayên xwe bikin"

Kemal Sîdo, ji ber rêgeha aborî ya Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Tirkiye ye, rewşa RHK'ê zehmet nirxand û got: "Ez sedemên hevkariya aborî ya RHK'ê û Tirkiye'yê baş têdigihîjim, lê belê RHK'ê û bi taybet PDK, pêwîste bi ser PDK-S'ê ve ji ENKS'ê re ragihîne ku beşdarî tifaqa dij-YPG'ê nebin. Propaganda û helwesta rikber a PYD'ê jî û ya ENKS'ê jî ne rast e, divê her dû alî bi hev re rûnin, bipeyivin û pirsgirêkên xwe çareser bikin.

**'Cihû dixwazin hevkariya kurdan bikin'**

Dr. Kemal Sîdo ku çendek berê serdana Îsraîlê kiribû, di derbarê serdana xwe, têkiliyên Îsraîl û gelê cihû yên bi gel kurdan de çavdêriyên xwe bi me re parve kir. Sîdo amaje bi wê yekê kir ku Îsraîl perçeyek ji Rojhilata navîn e, lê belê ev nayê wê wateyê ku gelê Filistînê ji mafê neteweyî bêpar e. Sîdo wiha dom kir: Îsraîl di mijara DAIŞ'ê de ne bêdeng e. Îsraîl zane ku metirsiya DAIŞ'ê çi ye, lê em bixwazin jî, nexwazin jî rewşa Îsraîlê xerab e. Alema îslamî hemû li dijî Îsraîlê ye. Ji ber vê yekê wek dewlet, dibe ku Îsraîl bixwaze ku sunne û şîa li dij hev şerrekî mezin bikin û hev lawaz bikin, Hizbûllah, DAIŞ, Sûriye, Iraq, Îran û Tirkiye lawaz bibin. Lê belê gelê Îsraîl ên cihû metirsiya DAIŞ û îslama siyasî dibînin. Li wê derê, min vê mijarê bi gelek aliyan re, bi çapemeniyê re û bi akademîsyenên Zanîngeha Tel Avîv'ê re gotûbêj kir. Hemûyan jî ragihandin ku hem Îsraîl û hem jî lobiya cihû ya cîhanê meyldarin ku li dij îslama siyasî hevkariya kurdan bikin. Divê em jî pêwendiyên xwe baştir bikin.

Sîdo di derbarê rola neyênî ya dewleta Îsraîlê ya di şoreşa 1975'an a Mele Mistefa Barzanî û bûyera 1999'an a girtina Serokê PKK'ê Abdula Öcalan de jî wiha vegot: Her çiqas siyasetên dewleta Îsraîlê yên ne rast hebin jî, gelê Îsraîlê dostên kurdan e. Ger em bînin bîra xwe; Sala 1975'an, dema ku di bin serokatiya Mele Mistefa Barzanî de kurdan şoreşek pêk anî, Îsraîl jî tê de hemû welatên herêmê kurdan bi tenê hiştin. Her wiha sala 1999'an, dema ku Serokê PKK'ê Abdula Öcalan revandin û radestî Tirkiye'yê kirin, destê Îsraîlê jî di vê revandinê de hebû. Di van herdû meseleyan de jî Îsraîlê dikaribû helwesteke din şanî bide. Ev, dû xalên reş ên dîroka pêwendiyên Îsraîl û kurdan in. Lê belê di nav gelê Îsraîlê de sempatiyeke baş ji bo kurdan heye. Divê kurd jî netirsin û bêjin ku Îsraîl beşek e ji Rojhilata Navîn û wek dewlet û rêxistin pêwendî pir baş nebin jî divê wek dû gel pêwendiyên me bi Îsraîlî û hemû cihûyên dinyayê re baş bibin"

Şakir Epözdemir:

# Li Osmanî statû ya kurdan hebu

Evîndar Tekîn

Li Rojhilata Navîn, di nav aloziya şerê dijwar de nîqaşa herî mezin nîqaşa maf û statuya kurdan e. Li Bakur şer û aramî bi ser statuxxwestina kurdan ve rû didin. Li Rojava, piştî şerekî mezin kurd ji bo statuya ku bi dest xistine biparêzin tevdigerin û li Başûr kurd bi dîplomasiyeke berfireh hewl didin ku statuya xwe ya federalî bi serxwebûnê bixemilînin. Bi vê hilkeftê me xwest em di rûpelên dîrokê de mijara statuya kurd û Kurdistanê bidozînin û me berê xwe da Nivîskar û Lêkolîner Şakir Epozdemir ku di vî warî de pispor û şareza ye û xebatên giranbuha pêk anîye da ku şarezayiya xwe bi me re parve bike..






**Di derbarê destkeftiyên kurdan û osmaniyan de Epözdemir got ku piştî şerê Çaldiranê Şah Îsmaîl nexwestiye dev ji Kurdistanê bi taybetî jî bajarê Amedê berde, ji bo vê yekê bi fermandariya Qere Xanê artêşeke giran şandiye ser Amedê.**

**'Mîrekiyên kurd heta Akkoyûniyan serbixwe ne'**

Egerî ew e ku kurd û Osmaniyan yekem car di sala 1514'an de li Amasya'yê bi pêşengiya Îdrîsê Bedlîsî, bi ser Siltan Selîm û 28 Mîrektiyên kurd ve tifaqek çêkirine û ev tifaq bi mebesta parastina mafên xweseriyê û piştgirîdayîna hev a stratejîk û çekdarî bû ku weke ku dû aliyên serbixwe tifaqekê çêbikin. Lê, beriya vê tifaqê gelo rewşa kurdan çawa bû? Şakir Epözdemir qala statuya kurdan a beriya tifaqê kir û van agahiyên girîn dan; "Wê demê statuyên kurdên Rojavayê Kurdistanê tune bû, beşek ji wê herêmê bi Cizîra Botan ve beşek jê jî bi statuya malbata Canpolatan a Kîlîsê ve girêdayî bûn. Başûrê Kurdistanê, bi Baban, Soran û Behdînan ve (Kurdistana Federal a îroyîn) Kerkûk jî tê de dide ber xwe. Mûsil, wê demê bajareke Dewleta Memlûkên Misrê ye. Li Kurdistana Bakur Mêrdîn, Amed, Erxenê, Berecîk , Xarpêt û wan dor û beran bê statu ne, bê mîr û wezîr û artêş in. Bindest in. Di bin destê Aqqoyiniyan de ne. Aqqoyunî têk çûne, Sefewî ketine şûna wan, ji esareta Uzun Hasan û silala wî dewrê Şah İsmaîl bûne. Ev rewş, ji sala 1400'ê ve dom dike. Wê demê Riha, Gumgum û Meletî jî wilayetên Melîkên Misrê ne. Yek bihûsteke axa Kurdistanê bi Osmaniyan ve nîne. Rojhilata Kurdistanê ku em bêjin Mukrî, Bradost û Erdelan; ji Bazîdê, Xoyê heta Kermanşahê Mîrekên xwe hene û serbixwe ne. Kurdistana Bakur bi Cizîr, Eskîf, Batman û Qulpê ve, bi Hezro, Licî, Çêrmûk, Egil, Palo û Gênc û Bingolê ve ev statu xwe dighîne mintîqaya Dêrsimê ku navê wê eyaletê "Hikimdariya Çemişkezek" e. Ji sînorê Bingolê here Xinûs û Narmana nêzî Erzeromê, di vir de Mûş û Xelatê bide ber xwe were Sinorê Kawaş û Hizan; Bayikan û Motkan jî bide ser, ev der Rojkan e. Ev der Bedlîsa Şeref Xan e. Em dikarin bakur bi Elcewaz, Erdîş, Miradiye Seraya Mexînan ve xwe bighêjînin Xoyê, ev derên ha giş xwediyê statuyê ne. Hekkari; li Wan, Başkale û Gewaşê hikim dike. Mehmudî, li Kela Xoşavê hakim in. Di vê navê de Mirekiyên Farqîn, Sason, Gurdilan, Zirkan (Derzin), Şêrwan, Hizan, Spayert û Miksê jî divê em jibîr nekin." Epözdemir destnîşan kir ku heta ku Aqqoyûniyan di navbera salên 1465 û 1515an de bajar û kelên Kurdistanê xistin bin destê xwe mîrektiyên kurdan giş serbixwe bûn, bo nimûne Palo, Egil piştî tifaqa kurd û osmaniyan xwe rizgar kiriye lê Mîrekiyên wekî Cizîr, Eskîf, Hekarî, Bedlîs û hwd. 30-40 sal şerê azadiyê kirine û rizgar bûne. Her wiha Epozdemîr got ku gava ku di sala 1508an de Şah İsmail Gumgum û Xarpêtê girt û hate Amedê, vî bajarî ji waliyê Aqqoyiniyan stand, wê demê Mîrekên kurdan bi giranî li bakûr û başûr azad bûn, serbixwe bûn, lewma ku di sala 1511an de 12 mîrektiyên kurdan çûne peytextê Şah ku li ser tifaqê bişêwirin, Şah Îsmaîl ew avêtine girtîgehê û artêşên giran şandine ser Kurdistanê û 50 sal (1465-1515) li xaka Kurdistanê şer dewam kiriye, ji ber vê jî ji kurdan re ji xeynî tifaqa bi osmaniyan re rê nemane.

**'Herdû alî jî hewceyî hev bûn'**

Şakir Epozdemir bale kişand li ser şert û mercên wê demê ku tifaqa kurd û osmaniyan pêkan kir û got ku şertên siyasî û leşkerî zorê daye herdu aliyan jî, bo ku kurdan kel û bajar û mafê wan ên ji bav û kalan ji wan re mane bi dest bixin; ji bo osmaniyan jî da ku xwe ji gefên Şah Îsmaîl xilas bikin ev tifaq bivênevê bû û wisa domand: "Şah Îsmail ji Gumgum, Sêwas û heya Erzîncanê sînorê xwe fireh kiribû. Mintîqaya Dêrsimê bi temamî ketibû bin hikmê Sefewiyan û Nur Elî Xelife li wê herêmê hikimdar bû. Osmaniyan û bi taybetî jî Diplomatê navdar Mewlana İdrîs dizanibûn ku artêşên Kurdistanê, şervanên welatê kurdan 40 salan şerê Aqqoyiniyan bi serkeftî kirine û ew dikarin piştgiriyeke bêhempa bidin. Artêşên osmaniyan ên dewşirme û talanbir her berê wan li Balkanan, li welatên Mesihiyan bû ji bona xenîmetan, ewan nedixwestin ku ji Edirneyê bikişin herine ser Tebrîzê û şerê Sefewiyan bikin. Tim meyla wan li ser Şiîyan bû û ya giring xenîmet dê bi destê wan neketana. Ji ber vê yekê osmanî mecburî kurdan bûn, çawa ku aniha dinyaya pêşketî ya Ewropa û Amerikayê li hemberî DAIŞê mihtacî kurdan, Pêşmerge û Gerîllayên PYDyê ne ew jî wê demê mihtacê Mîrekên Kurdistanê bûn."

**Naveroka tifaqê**

Lêkolîner û nivîskar Şakir Epözdemir qala naveroka vê tifaqê kir û got ku Îdrîsê Bedlîsî û Wezîrê Şeref Xanê IV., Mihemed Axayê Kelhokî rê kirine li cem Siltan Selîm bi şertên ku mafên wan ên irsî(nijadî) û mafên statuyên wan bên naskirin û pejirandin, bi van şertan jî ew ê di şerî di navbera osmanî û safewiyan de piştgiriyê bidin dewleta osmanî. Epözdemir destnîşan kir ku di seneda nivîskî ku bi destê Îdrîsê Bedlîsî hatiye nivîsîn de kurd û osmanî li ser 3 babetan li hev kirine: 1-Dewleta osmanî mafên nijadî ên Mîrektiyên kurdan dê bipejirîne. 2- Di şer û pevçûnan de wê piştgiriyê bidin hev. 3- Mîrektiyên kurdan her sal baceke sembolîk wê bidin osmaniyan.

**Bi vê tifaqê kurdan çi bi dest xistin?**

Derbarê destkeftiyên kurdan û osmaniyan de Epözdemir got ku piştî şerê Çaldiranê Şah Îsmaîl nexwestiye dev ji Kurdistanê bi taybetî jî bajarê Amedê berde, ji bo vê yekê bi fermandariya Qere Xanê artêşeke giran şandiye ser Amedê. Amed, 13 mehan ber xwe daye heta ku osmaniyan artêşên xwe bi fermandariya Bıyıklı Mihemed Paşayî şandiye hawara artêşên Kurdistanê û Qere Xan jî dorpêçiyê rakiriye û reviyaye, pişt re şerê Çaldiranê qewimiye serê Qere Xanî hatiye jêkirin û kurd û osmanî bi ser ketine. Epözdemir got ku piştî vê têkçûna Qere Xanî, Mêrdîn û wan dewerên ku 100 sal di bin kontrola Aqqoyûniyan de bûn ketine ser erdê osmaniyan. Epözdemir got ku kurdan, di şerên Çaldiranû Qoserê de piştgirî dane osmaniyan û osmaniyan jî hatine hawara kurdan, piştî serkeftina şerê Qoserê (Koçhisar) mîrên kurdan bi artêşên xwe bajarên xwe ji dagirkirina Safewiyan rizgar kirine û osmaniyan jî bi saya vê tifaqê di nav 3 salan de (1514-1517) axa xwe 2 qat û nîv berfireh kirine, kurdan jî nêzîkî 30 bajarên xwe rizgar kirine û bûne şirîkên dewleta osmanî. Epözdemir got ku 333 salan ev tifaq dewma kiriye û mafên kurdan ketine nav qanûnnameyên osmaniyan.

## Jan Dost:

# Guhê desthilatdariya kurdan serad e!

**Xanî dixwest ruhekî pif bike laşê kurdan ê li ber mirinê. Kir jî. Ewî kurd bi Mem û Zîna xwe zindî kirin, vejandin. Xanî ji kurdan dixwest ku li zimanê xwe xwedî derkevin. Sifreya xwe navêjin ser zibilgoyan û nedin pey zîv û zêrên xelkê ên birqonekî.**





Siwar Bedirxan

Têgeha "bîra dîrokê" ji hêla rojavayiyan gelekî bilind tê nirxandin û bi taybetî di riştey ên dîrokê yên zankoyan de beşên "bîra dîrokê" vedikin û li ser wê têgehê rawdiwestin. Her wiha her çend dengbêj û qewlbêjan di warê vegotina dîroka kurdan de karekî giranbiha kiribin jî, îro eşkere tê dîtin ku pediviya kurdan bi zanîna dîrokê heye. Dema em temaşeyî dîroka kurdan dikin em yek ser li wê yekê rast tên ku serboriyên lêhengên serdeman, destan û gotinên hin dewran ji bo têgihiştina siberojekê rê li ber mirov vedikin.

Romannûsê kurd Jan Dost di her romaneke xwe de li ser rûpeleke dîroka Kurdistanê rawestiyaye û bere xwînerê xwe jî dayê nava wê dîrokê. Her romaneke Dost "bîreke dîroka" kurda ye. Berxwedana Pêşmergeyên Mahabadê, serhildana Şêx Seîd û feqiyên niştimanperwer, xwebexşiya Ehmedê Xanî ya ji bo kurdî û Kurdistanê, nakokiya axa û mîrên Komara Mahabadê ji hêla Jan Dost bi awayekî serkeftî hatine honandin.

Bi êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Başûr û Rojavayê Kurdistanê re kurd careke din tûşî şer û pevçûnên dijwar bûn. Her wiha di derbarê geşedanên siyasî yên Kurdistanê, rewşa rewşenbîriya kurd û kurdî em bi Jan Dost re axivîn. Jan Dost ê ku niha jî êrîşên DAIŞ'ê yên ser Kurdistanê, nakokiyên di navbera kurdan de heyî dinivîsîne, rexneyan li rewşenbir û desthilatdariya kurd jî digre û amaje bi wê yekê dike ku kurdan ji dîrokê ders vernegirtine. Li hêla din Dost, li ser koçberiya xelkê Rojava û pêkutiyên desthilatdariya kurd a li Rojavayê Kurdistanê jî daxuyand ku nayê qebûlkirin ku kurd zulme li kurdan bike.

**Di romanên te de di Mîrname, 3 Gav û 3 Darek û Mîjabadê de her wiha di Destana Kela Dimdimê ji de te cih dayê lêheng û serkirdên civaka kurd. Ji ser jiyana mîr û şêxên kurdan te dîrok û serkeftin û şikestxwarina kurdan nivîsiye. Gelo çima Jan Dost noqî dîroka mîrnişînên kurdan, dîroka wan bûye?**

Ez tim û tim dibêjim ku di mêjûya me de, şaşiyek heye bi gotineke din di nav xêzen dîrokê de sebebê bêdewletbûna me, sebebê "sêwîtiya" me her wekî cenabê Ehmedê Xanî gotiye heye. Me kurdan jî heta niha hîç dersek ji dîroka xwe negirtiye, hîç me bala xwe nedaye wan xêzên veşarî, lewma ez berê xwe didim wî alî. Ez berê xwe didim wan zeviyên tijî stirî û mayin û hêdî hêdî têre dimeşim. Bi van romanan ez li bersiva pirsên xwe digerim. Li bersivên pirsên seydayê xweyî seydayê kurdayetiyê Ehmedê Xanî digerim: Aya bi çi wechî mane mehrûm? Wekî din jî rewşa me ya îro qet ne dûrî a do ye. Dema ku Peymana Sewrê imze bû, dewleta Tirkiyê li dijî wê bû. Wê demê kurd xapandin û berê wan dan dijîtiya wê peymanê û bi sedan xortên wan ajotin eniyên şer li rojavayê Tirkiyeyê û dane kuştin di ber arrmancên xwe de. Ma rewşa îro ne eynî ye! Di 3 Gav û 3 Darek de ev mesele tê tevdan lê ka kesên ku bibêjin a divê em careke din nekevin eynî dafikê?

**Xelkê Rojava ket bin zulmeke birayane. Ew ne zulma serdestên kurdan qebûl dikin, ne jî mirovayetiyê. Xelkê kurd li Rojavayê Kurdistanê ji ber zulma rejîma Esed a xwînrêj bar dike lê ew ji ber zulm û sitema "birayên" xwe baz didin, xwe li pêlan diqelibînin, mirinê didin ber gavên xwe lê dixwaze bi vi buhayî be rûmeta xwe biparêze.**

**Çima Badînê Amedî, Şêx Ehmedê Xanî, her wiha Şêx Seîdê Pîran "tî nin?" Gelo tîbûna wan tîbûna kurda ye?**

Tîbûn sembol e. Sembola kesê ku dide pey bersivan. Di van her sê romanên te navên wan li qelem daye de, tîbûn di 3 Gav û 3 Darek de zêdeye. Her behsa tîbûna Şêx Seîdê pîran dibe. Ew tîbûna min e jî. Bi wê tîbûna şêxê gewre re trajedî zêdetir dibe, dilê mirovan zêdetir bi jana Şêx Seîd ve tê girêdan. Şêx Seîdê ku hindik mabû ew wek 'xayinê cumhuriyetê' ragihandana û mixabin ji devê hin kurdan bi xwe. Ma kî ne tî ye? Ma rastî ne avek dûr û kûr e ku hemû fîlozof, pêxember, serokên şoreşan û hemû mirov li pey qurtekê du qurtan jê ne!

A Badînê Amîdî ji tîbûnê wê de tir pêwistiya deryayekê bû. Derya jî sembol e. Derya ne ku bi awayê xwe yê fîzîkî û pêl û kenarên xwe mebesta min bû. Mebesta min têkiliya kurdan bi cîhanê re, kanalên diplomatîk ên ku divê dengê kurdan bigihînin her devera dunyayê. Banga Qazî Mihemed mixabin xeniqî û di meydan Çarçira de ma. Niha bi baweriya min rewş hinekî baştir e, dengê kurdan sînorê welatên wan derbas kiriye.

**Em dizanin ku te li ser Xanî û Mem û Zînê gelekî kar kiriye. Û her wiha tu weke Xanîşînas tê zanîn. Derdên Xanî çi bûn? Gilî û gazinên Xanî li kurdan çi bûn? Peyamên Xanî hatine fêmkirin?**

Derdên Xanî derdên min û te bûn. Ew îro bihata wê eynî gotinên xwe dubare bikirana. Wê eynî rexne li mîrên serdemê bikirana û wê her bigota: "Çi bikim ku qewî kesad e bazar...."

Xanî dixwest ruhekî pif bike laşê kurdan ê li ber mirinê. Kir jî. Ewî kurd bi Mem û Zîn a xwe zindî kirin, vejandin. Xanî ji kurdan dixwest li zimanê xwe xwedî derkevin. Sifrê xwe navêjin ser zibilgoyan û nedin pey zîv û zêrên xelkê ên birqonekî. Niha jî bihata yê eyni doz û daxwaz bikira. Ê berê xwe bida girseya gel û bigota: "Ma hûn şerm nakin! Ma hûn ji xwîna şehîdên azadiya xwe jî fedî nakin! Ka de hela ji min re bibêjin hûn vî zimanê xwe çima erzan û sivik dibînin û li ser naxebitin! Zingarê ji ser ranakin û sîqal nakin û spî nakin!

Mesaja wî, peyamên wî di xeleke zêde teng de man mixabin. Kurd sistomisto ne. Tiştên ku wan aniye serê xwe dijmian neaniye sere wan. Ellah wekîl be kurd hema ji xwe re li darbenekî digerin ku şaşîtiyên xwe mîna qapûtekî şil pêve daliqînin. Ne xema mîr bû peyama Xanî. Ne xema mîrên niha ye jî ka rewşenbîrên kezebşewitî û dilxwaz çi ji bo kurdan dibêjin. Guhe desthilatdariya kurdan serad e bayê pend û peyaman tê de nasekine.

**Tu weke rewşenbîrekî kurdî jî Rojavayî, halê Rojavayê Kurdistanê çawa dibînî? Bi hezaran xelk berê xwe didin Ewrûpa û ji Rojava derdikevin. Çi dibe? Xelkê Rojava çima welatê xwe dihêlin û bere xwe didin sirgûnê?**

Malwêraniyek mezin e, trajediyeke ku encamên wê dê valakirina Rojava be. Xelk êdî nema ji sloganan bawer dike. Li Rojavayê Kurdistanê rêveberiyek heye. Kêfa piraniya xelkê nayê gava ku ez wê rexne dikim. Ew li xwîna herikî dinêrin, wê xwîna pîroz a germ û sor a xort û qîzan û çavên xwe ji destdirêjî û zêdegaviyan digrin. Helbet ez nabêjim bila em mîna Ewropa bin, lê ez napejirînim ku kurd di bin siya parastina min de keça min a 16 salî ji mal derxe bibe perwerdeya leşkerî. Ez napejirînim ku ew desthilatdarî kurê min ê 17 salî li kolanê bikuje û nehêle diya wî li ser bigrî û li gel cenazeyê wî biçe goristanê. Ez napejirînim ku desthilatdariyek kurdî bavê min, birayê min û cîranê min bavêje zindanê ji ber ku partiyek wî ya siyasî heye ne mîna ya wê desthilatdariyê ye. Xelkên Rojava ketin bin zulmeke birayane. Ew ne zulma serdestên kurdan qebûl dikin, ne jî mirovayetî ye. Xelkên kurd li Rojavayê Kurdistanê ne ji ber zulma rejîma Esed a xwînrêj bar dikin lê ew ji ber zulm û sitema "birayên" xwe baz didin, xwe li pêlan diqelibînin, mirinê didin ber çavên xwe lê dixwaze bi çi buhayî be rûmeta xwe biparêze.

**Rewşenbîrên kurd, îstisna ne û tê de bi tevayî şeytanqûnî bûne. Piraniya wan bi zimanê desthilatdariyê diaxivin û mîna qirdikan li ber defa desthilatdariya kurdî direqisin. Çi li Başûr be, çi li Rojava û çi li Bakur be. Bi pirranî jî li Bakur.**

**Gelek rewşenbîrên kurdan ji ber "bêdengiya" xwe tên rexnekirin gelek ji wan jî ji ber "dengdariya" xwe tên rexnekirin. Sedema vê yekê çi ye? Gelo rewşenbîrên kurd bi erka xwe re ranebûne?**

Rewşenbîrên kurd, istisna ne têde, bi tevayî şeytanqûnî bûne. Piraniya wan bi zimanê desthilatdariyê diaxivin. Çi li Başûr be, çi li Rojava û çi li Bakur be. Bi pirranî jî li Bakur. Min bawer nedikir ku evqase nivîskarên xwe erzan dikin hebin. Zulm zulm e. Kî bike navê wê nayê guhertin. Zulma ku birayê min bike ji ya ku biyaniyek li min dike dijwartir e. Çima! Ez ji birayê xwe tenê dostaniyê dipêm lê gava gulleya xwe berra eniya min bide ne bira ye. Rewşenbîrên me naxwazin vê yekê fehm bikin. Ji xwe şim û gumana min ji fehma wan jî heye. Kitêbên wan hene erê, qurre ne, lê vikîvala ne. Ez pirr li wê yekê ecêb dimînim ku ev kes heta niha têgeha zulmê nas nekirine, ew tê nagihîjin bê ka hela sitemkarî çiye! Gelo em şerê ereban dikin ji ber ku ereb in yan ji ber ku zulmê dikin! Em tirkan mîna neyar dibînin ji ber ku tirk in yan ji ber ku sitemkar in û mafên me nas nakin! Gelek ji rewşenbîrê kurd hîn ev yek di mêjiyê xwe de zelal nekirine.

**Te di cihana edebiyata erebî de gelek xelat wergirtine her wiha romanên te tercûmeyî gelek zimanan bûne. Gelo te ji sazî û dezgehên rewşenbiriyê yên kurdan xelat stendine?**

Par li Silêmaniya di Festîvala Gelawêjê ya hijdemin de Xelata Husên Arif dane min. Ew bi rastî mezintirîn xelat bû ku min heta niha wergirtiye. Bi giştî dikarim bibêjim ku xelatdayin jî tevgerek medeniyetê ye. Weşanger dikare xelatekê ragihîne, saziyek nivîskaran, sendîkayek, partiyek... Lê mixabin li ba me hîn ev medeniyet nehatiye holê. Ez bi xwe ne li hêviya xelatan im. Xelata min a herî mezin xwendevanên min û hezkirina wan e. Ji xelatan wêdetir ez ji weşangeriya ereban razî me. Heta niha min bi 4 weşanxaneyên ereban re kar kiriye, pirtûk ji wan re wergerandine û peyman û girêbest li gel wan îmzekirine. Hemûyan jî pirtûkên min, ku ji mafên min in di wexta wê de gihandine min.

**Her romaneke te dîmenek e ji qonaxeke Kurdistanê. Di her romaneke te de texeyûlla Kurdistanê heye. Kurdistan niha jî di qonaxeke dijwar re derbas dibe. Gelo tê li ser vê qonaxê jî romanekê binivîsî?**

Bêguman ezê binivîsim û min nivîsiye jî. Xwîna Li Ser Minarê vê qonaxa me derdibirre. Desthilatdariya kurdî ya zalim rexne dike. Ez ne mecbûr im bibim berdevkê mîr. Ez ji seydayê xwe Ehmedê Xani fêr bûme, derbekê li sultên yekê li mîr bidim. Romana min a niha ku ez li ser dixebitim jî ya vê qonaxê ye. Romana Kobaniyê ye

**Jan Dost ji jiyana Almanya aciz e. Gelo çima nayê Kobanê? Gelo derfetên vegerê pêk nehatinê?**

Ez li Kobaniyê dijîm keko. Ez tu carî jê dûr neketime. Bedena min dûr e, erê. Lê hiş û xewn û xeyal her li wan kolan û sikakan in. Her dilê min ji dar û berê wî bajarokê min re lê dide. Di bin siya vê desthilatdariya niha de, di rewşa aloz a niha de ez venagerim Kobanî. Ez dizanim hestiyên bav û dêya min bangî min dikin. Cîranê min ên şehîdbûyî bangî min dikin, axa taxa min, Miştenûr; Kaniya Mişidê, Girê Kaniyê û ew der û dor hemî li hêviya vegera teyrên barkirî ne. Hêlîn li benda me ne. Ez dixwazim vegerim hema bila wek meytekî jî vegerim xem nake.

**Xwîna Li Ser Minareyê, bi erebî belav bû. Em wisa dizanin ji bo kurdiya soranî jî hatiye tercûme kirin û ew ê di demeke nêz de xwînerên kurmancî jî wê bixwînin. Bi erebî nivîsîna te gelek hat nîqaşkirin. Gelo Jan Dost dev ji nivîsîna kurdî berdaye?**

Yekemîn helbesta ku min nivîsî bi erebî bû. Ez deh salî bûm wê demê. Min helbestên xwe yên pêşîn heta panzdesaliya xwe hemû bi erebî nivîsîbûn. Zanîna min a zimanê erebî pirr ji ya kurdî xurttir e. Lê dîsa jî min biryar dabû ku bi erebî nenivîsim. Bi bûyerên komkujiya Amûdê re, di hezîrana 2013'an, êşeke mezin di dilê min de peyda bû. Min xwest wê êşê bi kurdî bibêjim min nikaribû. Zimanekî din ji min re lazim bû, ne ku min bi kurdî nikaribû romanek binivîsanda lê ez hêrs bûbûm û min hişê xwe winda kiribû. Min zimanê xwe jî winda kiribû. Kurdiya min êdî nema têra min kir. Nema têra hêrsa min kir. Rewşa ku min xwe têde dît ji derbirrînê mezintir bû. Min xwe avêt bextê zimanê erebî, yarika xwe ya berê, wê jî gotina min neşikand, ez hembêz kirim û riyên asê yên derbirrînê, li ber min vekirin û buhurîna wan hêsan kir. Romanê cihê xwe dît. Ez li gor gotina rexnegirên ereb, têde biserketim. Salek neçû çapa duyem jî derket. Ev jî seyr bû! Romanek ku behsa jana kurdan bike li welatên ereban wisa belav bibe! Piştî wê min Eşîqê Wergêr û Naqosên Romaye jî nivîsîn. Êdi li cihana ereban navê min derketiye pêş. Berî çend rojan min peymana romana xwe Naqosên Romayê bi mezintirîn weşanxaneya erebî re imze kir. Lê bila xwendevanên min netirsin û xeman nexûn. Bi dû de, bi dû wê bêhnvedanê de romana Kobaniyê tê.



## Jan Dost kî ye?

Jan Dost, romannûs, helbestvan, wergêr û nivîskarekî kurd e. Dost di sala 1965'an de li bajarê Kobanê yê Rojavayê Kurdistaê hatiye dinyayê. Xwendina xwe ya navîn li Kobanê qedandiye. Li Helebê xwendina lîsansê domandiye. Jan Dost, di dehsaliya xwe de dest bi nivîsîna helbestên erebî kiriye. Ji panzdesaliya xwe û şûn de jî bere xwe dide kurdî. Ji sala 2000'î û vir ve li Elmanya'yê dijî. Zêdetirî 15 salan e li ser Ehmedê Xanî kar dike û Mem û Zîn tercûmeyî erebî kiriye. Berhemên Dost tercûmeyî gelek zimanan bûne û gelek xelat wergirtine. Mijabad, 3 gav û 3 darek, Mîrname, Martînê Bextewer, Eşîq el-Mutercim, Xwîna Li Ser Mînareyê, Naqosên Romayê navê romanên Jan Dost in. Her wiha bi navê Kela Dimdim, Dîwana Jan jî du dîwanên Dost hene.

# PÎRANŞAR

Navê bajêr yê fermî Pîranşar e. Pîranşar tê wateya cîhê ku ji alî pîran ve hatiye avakirin. Pîr di wateya 'oldar û ezizên bîr û baweriyên kevn' de tê bikaranîn. Li gor lêkolînan yek ji nawenda Ola Zerdeştî Bahdîn li vê heremê bûye.

Welat Baz

Ev der şarê pîran, wargeha xanan, tengava Zagrosan Xanê ye. Ev bajarê nêzî asîmanan Pîranşara Kurdistanê ye. Xane bi navê din Pîranşarê li ser sînorê Kurdistanê li quntara rêzeçiyayê Zagrosan cîh digre. Pîranşar li Rojhilatê Kurdistanê bajarekî ostana Azarbaycana Rojava ye.

## Erdîm

Bajarê Xanê di navbera meridiyena 36 ya bakûr û paralela 44 ya başûr de cîh digre. Firehiya xaka Pîranşarê 2259 metreqare ye. Beşekî mezin ji xaka bajêr ji çiya û girên bilind pêk tê. Herwiha ji ber ku Çemê Zê ji erdîma bajêr derbasdibe tejeneyekî fireh li derdora çem peyda bûye. Cîranên Xanê li bakûr Zarkatan, Darbaka li rojava Şînabad û li başûr jî Badînabad û bajarên Soxanlû ne. Li rojava xaka bajêr jî Başûrê Kurdistanê cîh digre. Bajer li ser sînorê Başûrê Kurdistanê li kêleka rêya navnetewî ye. Li wî alî sînorê Kurdistanê deriyê Hac Umran û Şîwareş cîh digre.

## Bajarê çiyayan

Erdîma Xane çiyayî ye. Bajêr ji deryayê 1300 metre bilind e. Li nêzî bajêr xetên fayên erdhejê hene. Ji ber vê yekê salane dû sê car erdhêjên piçûk pêk tên. Di sala 1910'an de ku li heremê erdhejekî mezin pêk hatiye, bûye sedema mirina 12 hezar kesî. Xane li quntarê Çiyayên Siyako û Şîfan hatiyê avakirin. Ji ber ku bajêr li cîhekî bilinde, zivistanan sar, havînan jî hênik e. Di sala 1985'an de serma bajêr heta 33 dereceyê binê sifirê ketiye. Ji ber ku havîna jî hênik e, rêjeya germahîyê di meha tîrmehê de herî zêde 23 derece ye. Bajêr bi vê taybetiya xwe li Kurdistanê yek ji cîhê herî zêde şilî digre ye. Rejeya barana berfê salane 940 milîmetre ye.

## Daristan

Çiyayên heremê qasî 3 hezar metre bilindin. Gelek ji çiyayên Xanê bi daristanan xemilandîne. Xanê li Ostana Azarbaycana Rojhilat yek ji bajarên herî şîn e. Di demên kevn de li Xanê berahiyeke fireh ya daristanan hebûye. Li daristanên Xanê hirmiyên bejî, mazî, bî, bihîv, fistiq, zalzalk, şîrhişk û tewrêzîl hene. Ji ber ku hawîrdora heremê ji bo kiştûkalê destdare sektora kiştûkalê pêşketiye. Ji sala 2002'an virve di vê sektorê de hinek pêşketin heye. Wek mînak li bajêr û derdorê 4 fabrîqayên şekir hatine avakirin. Di van fabrîqayan de rojane 15 hezar silq tên bikaranîn û salane 30 hezar ton şekir tê hilberîn. Di van fabrîqayan de ji bo lawiran êm û ji bo hin dermanan jî alkol tê hilberîn.

## Mermerê navdar

Tiştê ku Bajarê Xanê bi cîhanê daye naskirin û wek marqayekî Kurdistanê hatiye tescîlkirin mermerê vî bajarî ye. Li çiyayê derdora Xanê ji 100î zedetir cûreyên mermer û granît derdikevin. Ev mermer di gelek form û rengande ne. Qalîte û delaliya ev mermerê Pîranşarê di nav mînakên xwe de li rêza jorîn cîh digre. Bi taybetî li İtalya û Portekîzê mermerê Pîranşarê tê bikaranîn. Ji ber delaliya mermerê bajêr li heremê çend atolye ji hatine vekirin û li gelek ocaxan mermer tê derxistin. Bi vî awayî li heremê gelek kes bi mermervaniyê debara xwe dike.

## Rêvebirî

Rojhilatê Kurdistanê li gor pergala rêvebiriya İranê li Ostanan hatiye belavkirin. Li Ostana Rojhilatê Azarbaycanê ku peytexta wê Urmiye ye, bajarên wek Mahabad, Bokan, Mako û Xane cîh digrin. Kurdên din yê Rojhilatê Kurdistanê li eyaletên Kermanşa, Kurdistan, Loristan, İlam, Hamedan û Azarbaycana Rojava dijîn. Li Mazenderan, Gîlan û Xûresanê jî hijmareke mezin Kurd hene. Xane li gor pergala rêvebirya İranê bajarekî eyaleta Azabaycana Rojhilat e. Li eyaletê piştî Urmiye û Mahabadê wargeha herî mezin Xane ye.

Şeniya bajêrê Xanê li gor hijmarên nû tevî gund û navçeyan nêzî 100 hezarî ye. Ji sedî 95ê bajêr kurd in. Ji bilî kurdan hin malbatên azerî û karmenden faris jî li Xanê dijîn. Kurdên Xane bi zarava soranî û bi devoka mukrî diaxifin. Xane yek ji bajarên nawendî yê herema Mukriyan e. Kurdên Xanê hemû Musluman û ji mezheba Sunî ne. Azerî û farisên Xanê şiayên 12 îmamî ne.

## Zanîngeh

Li Xanê bi navên Zanîngeha Peyamê Nûr û Danîşgehî Azad dû zanîngeh hene. Taybetiyeke bajêr ewe ku li hemû Kurdistan û İranê rêjeya herî bilind ya xwendinê li vî bajarî ye. Ji sedî 94ê bajêr lîse xwendine. Ev rêje li İranê ji sedî 84 e. Herwiha li bajêr ji sed kesî 30 kes dibistan xwendiye û ev rejê li İranê 24 kes e. Ji ber pêşketina xwendinê li bajêr gelek entelektuel û nivîskar û edîb jî hene. Li Pîranşarê hersal festîwalên edebî jî tên lidarxistin.

## Nav û dîrok

Navê bajêr yê fermî Pîranşar e. Pîranşar tê wateya cîhê ku ji alî pîran ve hatiye avakirin. Pîr di wateya 'oldar û ezizên bîr û baweriyên kevn' de tê bikaranîn. Li gor lêkolînan yek ji nawenda Ola Zerdeştî Bahdîn li vê heremê bûye. 30 kîlometre li başûrê Xanê bi navê Badînabad bajarekî heye ku vê angaştê dirastîne. Li aliyê din di kolanên heremê de diyar bûye ku rêçen jiyana şaristaniyê li heremê heta dema kevirîn yanê paleolîtîk dirêj dibe. Li derdora Xanê gelek bermahiyên 14 hezar salî hatine keşifkirin ku ji dema kevir, bronz û hesin mane. Xane di pêvajoya dîrokî de di bin hukumdariya şaristaniyên Mad, Hexamenîş, Atropatan, Sasanî û Sefewiyan de maye.

Herwiha navê bajêr yê ku di nav gel de wek 'Xane' tê zanîn, ji xanên kurd yên heremê tê. Heta rejima Şah Riza jî li heremê xan û mîrên Kurd hukum ajotine. Piştî ku dewleta nawendî ya İranê hukmê xwe fireh kiriye rêvebiriya heremî jî ji destên xanên kurd derketiye. Wek tê zanîn cara dawîn Heme Reşîd Xan di çaryeka yekem ya sedsala 20'an de li heremê hukum ajotiye û li dijî rejima Şah Riza demekî dirêj berxwe daye. Di dema şerê İraqê de bajêr xesarên mezin dîtiye. Di şer de jêrgeha bajêr hat taxrîbkirin û gelek kesan jiyana xwe jidest daye. Ji ber vê yekê hîn jî li Pîranşarê hijmara mêran ji ya jinan zêdetir e. Beriya şer şêniya bajêr 150 hezar kes bûye. Ji nîvî zedetir Xaneyî piştî şer koçberbûn û bajêr biçûktir bûye.

Sûka Xanê ji serê sibe heta derengê êvarê ji hezaran însan re mazûvanî dike. Li kolanên bajêr bazirganî û muhabet di nav hev de heta derengê şevê dajo. Ji ber ku bajêr li ser sînore, bazirganiya sivik pêşketiye. Ji dikkanên bajêr de zedetir malên qaçax yên ku welatên cîran tên bal dikşînin.



Li Xanê yek ji pîşeyên rojane qaçaxçîtî ye. Qaçaxçiyên bajêr ku di nav sînorên herdû aliyên Kurdistanê de dixebitin, di karê xwe de heywanên wek hesp û qantir bikar tînin. Barên ku li pişta wan heywanan tên siwarkirin li ser kurtanan tên bicîh kirin.

## Sûka bajêr

Xane ji ber ku li ser sînore, rûniştvanên bajêr debara xwe zêdetir bi bazirganiyê dike. Gelê bajêr li gor heremên din hinek dewlemendtir e. Qazanca serê mirovê salane nêzî 30 hezar dolare. Rêjeya xizaniyê li bajêr ji sedî 11 ye. Li aliyê din tûrîzm jî di aboriya bajêr de cîhekî giring digre. Li gor îstatîstîkên dewletê salane 500 hezar tûrîst ji İraq û deverên din yên Kurdistan û İranê tên serdana bajêr.

Sûka sergirtî yanê Bazarî Xanê, li bajêr yek ji avahiyên balkêş e. Bi giştî li Rojhilatê Kurdistanê hîn jî sûkên sergirtî di aborî û bazirganîyê de cîhên girîng digrin û xwedî lazmatî, pêdivîyên xwe ji van sûkan tedarik dikin. Muşteriyekî li sûkê ji sebze û fekîyan heta goşt û zaxîrê hemû pêdiviyên xwe karê ji sûkê peyda bike. Her kolanekî sûkê ji bo beşekî hatiye veqetîn. Kolanên teng, baniyê girtî, dikkanên biçûk, koma muşteriyan, dengên firoşkaran, bîhn û dîmenên ku ji bazarê belavdibe tabloyeke çîrokî radixe ber çavan.

Sûka Xanê ji serê sibe heta derengê êvarê ji hezaran însan re mazûvanî dike. Li kolanên bajêr bazirganî û muhabet di nav hev de heta derengê şevê dajo. Ji ber ku bajêr li ser sînore, bazirganiya sivik pêşketiye. Ji dikkanên bajêr de zedetir malên qaçax yên ku welatên cîran tên bal dikşînin. Sûkên Kurdistanê di salên dawîn de wek pasajên modern hatine guhertin û ji lazmatiyên elektronîk heta pêdiviyên şexsî li dikkanên van sûka tên firotin.

Li Xanê çend nawendên bazirganiyê hene ku rûniştvan li van deveran lazmatî û pêdiyên rojane tedarik dikin. Herwiha ji ber ku deriyê Hac Umran li nêzî bajêre gelek kasib û bazirgan tîcareta navnetewî dikin.

Di nav bajêr de ji bilî sûkên kolanan, çend pasaj hene. Pasaja Xiyabanî İmam ya herî qelebalix e. Di pasajê de gelek dukkan û esnaf lazmatiyên cudareng difroşin da ku pêdiviyên bajariyan bibersivînin. Li van nawendên bazirganiyê rûniştvanên bajêr lazmatî û pêdiyên rojane tedarik dikin.

## Xerat

Xanê ji ber ku bajarekî daristanî ye, li bajer karê darvaniyê jî pêşketiye. Darên ku ji êzingên heremê tên bidestxistin pêşiyê di xîzarxaneyên bajêr de tên jêkirin û rastkirin û li bazarê tên firotan. Text û qalasên ku ji darên mazî û biyan tê bidestxistin, jî alî xeratên bajêr tên bikaranîn. Xeratên Xanê ji darên çiyayên xwe pêdiviyên hemşeriyan yên wek derî, pace, qefes û tiştên din çêdikin.

## Lihêfdûz

Jiyana toreyî û karêndestî li Rojhilatê Kurdistanê, li hember modernîteyê hîn jî berxwedide. Ev lihêv û doşekên ku êdî ji xew û jiyana bajarên mezin derketine, li Xanê hîn jî şevên hênik germ dikin. Lihêv ji qumaşên taybetî û rengarenk tên çêkirin. Di lihêv, balîv û doşekan de hirî tê bikaranîn. Lihêvên havîn û zivistanê bi awayên cuda tên çêkirin. Wek karêndestî yên din, lihev û doşekçêkerî li sûka Xanê ji pîşeyên qîmetdarin. Li gor hosta Hemîdî Qurbanzade, kesên ku lihêvên destî bikartînîn zêdetir gundî ne û hijmara muşteriyên wî gelek kêm bûne.

Li Kurdistanê bikaranîna lihêv, doşek û balîvên destî zêdetir wek adet di nav bûk û zavayên ber zewacê û kesên qîmetdar yên çanda gelêrî de didome. Hostayê lihêfdûz Hemîd li gel deng û muzîka Mazhar Xalikî di nav cîhana xwe de beşek ji çanda Kurdî divejîne û di alema xwe de dixebite. Ew 3 sale lihêf û doşekan çêdike û li Mahabadê li cem hostayekî fêrî vî karî bûye.

## Kurtanvan

Li Xanê yek ji pîşeyên rojane qaçaxçîtî ye. Qaçaxçiyên bajêr ku di nav sînorên herdû aliyên Kurdistanê de dixebitin, di karê xwe de heywanên wek hesp û qantir bikar tînin. Barên ku li pişta wan heywanan tên siwarkirin li ser kurtanan tên bicîh kirin. Ji bo pişta hesp û qantiran zirarê nebîne û karibin bar hilgirin ji wan re kurtan gerek e. Li heremê bi sedan qaçaxçî bi hezaran hesp û qatiran xwedîdikin. Helbet ji bo vê pêdiviyê bibersivînin li Pîranşarê kurtanvan peyda bûne. Li bajêr çend dükkan û gelek hostayên ku kurtanan çêdikin hene.

Yek ji van dikkanan li Xiyabanî İmam ji alî Hosta Hesen û şagirdên wî ve hatiye vekirin. Di demên dawîn de ku li sînorê Kurdistanê di navbera kurd û hêzên rejima İranê şer derketiye û ewlekariya sînoran nemaye di karê qaçaxçîtiyê û yê kurtanvanan kêmbûye. Kurtan ji ferş, sapê nebatan û qamîşan tê çêkirin. Li vê dikkanê rojane 4 kes 10-12 kurtanan çêdikin. Yek ji hostayan qalib çêdike, yek didrû, yê din sap û qamîşan lê bikeys dike.

## Sobeçêker

Rojên zivistanên Xanê bi sobeyên ezingan tê germkirin. Helbet ji bo sobeçêkirinê jî hostê divên. Yek ji sobeçêrekê Pîranşarê İbrahîmê İbrahîmî ye. Ev hostayê ciwan mehên havînê di dikkana bavê xwe de dixebite û paşê di zanîngehê de xwendina xwe didomîne. Ji ber ku sobeyên teneke û boriyê wan zû xesar dibînin, hemû malbat zivistanan van pêdiviyên xwe nûh dikin. Ji ber vê yekê divê ji havînê ve gelek sobe, borî û çengên wan bên amedekirin û depokirin.

## Ziravkar

Li sûka Xanê gelek ziravkar jî dixebitin. Ji ziravkarên sûkê cemal Payîmerd û Hesenê Heyderzade bihevre dixebitin. Li bajêr kesên ku ji mal û dikanên xwe re xeml û nîgar û tabloyan distînin, an jî diyariyekî nazik bidin dildarekî xwe van herdû hunermendan nasdikin. Ev herdû destkar zedetir karên xetatiyê dikin an jî tabloyan çêdikin. Li bajêr hunerhêzekî ku ji berhemên li mal û dikkana xwe dalneqandibe nîne.

Ziravkarên Xanê li ser sîparîşan dixebitin. Zêdetir ji bo rojbûnan, şahiyan û rojên din yên taybetî sîparîşan digrin. Gelek berhemên wan di maxazayên bajarên mezin yên wek Mahabad û Sînê de jî tên firotan. Di karê xwe de zedetir text an jî sedef bikartînin. Di çarçoveyên giranbiha de li gel motîvên ciwan nav, helbest, ayet, gotin an jî tiştên din dinivsînin.

Di vê mînakê de jî wek tê dîtin ji bo rojbûna kesekî sîparîş girtine û ji textekî zexm navekî dinivsînin û di çarçoveyekî de bicîh dikin. Ji hostayên ciwan yên ziravkar Cemal Payîmerd ku 21 sali ye û ji sê salan virve vî karî dike dibeje ew di berhemên xwe de her motîvên kurdî bikartîne.

## Muzîsyenên bajêr

Dema navê Xanê tê gotin muzîk tê bîra mirov. Di muzîka Xanê de enstrumanên ku ji bo rîtuelên tasawûfî de tên bikaranîn cîhekî girîng digrin. Di serê van sazan de jî santûr û tar tê. Ji ber ku bandora terîqan li heremê hukum dajo musîka tasavûfî pêşketiye. Yek ji muzisyenên bajêr, Bahdîn Xaneyî ye. Bahdîn ji zarokatiya xwe ve vî karî dike. Li Urmiyê û Tahranê perwerde ya muzîkê dîtiye.

Li Xanê çend akademiyên mûzîkê û konserwatûwarekî jî heye. Herwiha wek vê di vê dibistana biçûk de tê dîtin hin mûzîsyen di fêrgehên taybetî de jî şagirdan digihînin. Li gor santûrvanê ciwan, esturmanên ku ew bikartîne Kurdî ne û bi mûzîka Kurdî re gelek bi ahengin. Bahdîn behsa hunera bajarê xwe dike. Bahdîn Xaneyî bi santûra xwe pîşandanekî diyarî tûrîstan dike û hostayiya xwe nîşan dide. Gerokên Xanê bi melodiyên santûra Bahdîn xwahafiziya Xanê dikin.



Nadire Güntaş Aldatmaz

# Verêdesthilatî de heşîyariya çapemenîyê



**Medyaya ewreyene nîya bê îzan, bê exlaq û bê wijdan a. Sayeya na bêexlaqîye de domanê şarî mirenê, seqet manenê. Şehîdîye goynenê, domananê xo kî nêruşnenê eskerîye. Pêro pîya meyîtê domananê şarê feqîrî ser o polîtîka virazenê. Sey rîyê xo wijdanê xo kî kerdê sîya.**

Wayîrê îqtîdarî seba ke îqtîdarê înan bêproblem dewam bikero, seba ke heme neheqîya înan binimno, heme falîyetanê înan meşru bikero yan xo rê yew çapemenîye peyda kenê yan kî çapemenîya ke esta xo rê hêrînenê. Bi weşananê na çapemenîye şarî xapinenê. Bi no tore omrê îqdîdarê xo kenê derg.

Îqtîdarî seba amacê xo yo bingeyinî heme rayan mubah vînenê. Heta ke vengê şarî birna, heta ke şar kerd kung, kerd hewna çapemenîya xo xebitnenê.

Tirkîya de zêdeyê çapemenîye tim borozana dewlete bîye. Tim sey vengê dewlete veng dayêne. Rojnamegerê Tirkîya seke mamurê dewlete bî,(Ez tayêne tenzîh kena.) patronê xo rê xizmete kerdêne. Nika halê çapemenîye dahîna wahîm o. Kamcîn rojnameger/e ke tenê vengê îqtîdarî ra cîya qisey bikero derhal karê xo keno/a vîndî. Key ke caye ra zobî vengî vejîyayî, key ke nê vengî sey vatena îqdîdarî nêbî, muqtedîrî derhal dest erzenê ci, wayîranê rojnameyan/televîzyonan gêrenê û ê kesan kar ra danê eştene. Nika Tirkîya de rojnamegerê birêzî bê kar ê. Hema hema pêro kî hetê wayîranê îqtîdarî ra karê xo ra ameyê eştene.

Tirkîya de halê çapemenîye dej dano be merdimî. Key ke tv. akerê tey wayîranê îqtîdarî ra yew qisey keno. Ê qiseyan ke nêweşanê çi bela yena sereyê înan ser ma pêro êdî zanenîme. Wayîrê medya eynî wext de mutahît ê, eynî wext de bazirgan ê, eynî wext de wayîrê karxaneyan ê. Coka gerek tim leyê îqtîdaran de bibê. Wexto ke verê îqtîdarî de vindertî o wext heme dewletîya xo kewna tehlukeyê vîndbîyayîşî.

Hetê ra kî exlaqê çapemenîye yê enternasyonalî esto. Tirkîya de merdim ke krîteranê exlaqê çapemenîye bîyaro ca yan karê xo ra beno yan kî canê xo ra. Zaf senik bê kî tayê kesê biexlaqî estê. Qiseyê mi înan rê nîyo, qiseyê mi ê ke xo roşenê, ê ke seba cebê xo wijdanê xo roşenê înan re yo. Ti nîyadana ke wayîranê îqtîdarî qalê aştîye kerdo, çapemenîya înan, rojnamegerê înan bi rojan aştîye ser o nusenê. Ma înan ra musenîme ke aştîye zaf baş a, kes ke nêkişîya, mayê kesî ke nêbermayî şarê ma bi huzur ciwîyeno. Genceniya domananê ma, xortanê ma binê erdî de nêpoyîna. Ê kî sey her kesî dewamê heyatê xo kenê, eşqê yewî/e benê, zewejînê benê wayîrê domanan. Yanî no heyat de çik ke normal o înan kenê. Nîyetê îqtîdarî ke bi aştîye bî nuştoxanê înan ra ma nê çîyan wanenîme.

Key ke wayîranê îqtîdarî goreyê menfaatê xo fikrê xo vurna ê kî desinde fikrê xo vurnenê na rey kî çekanê xo ancenê, sey yew cengawerî, seba înan ceng kenê. Fekê înan ra gilêze çarç bena, har benê, saûso ra nusenê. Seba welatî merdene, şehîdîye goynenê. Şarî tiz kenê verdanê yewbinî.

Tirkîya de çapemenîye tim tutika dewlete, tutika îqtîdarî bîye la nê serranê pêyenan de medyaya neteweye de qet ar-edep nêmendo. Rîyê pêroyîne sîya yo. Nika ke wayîranê îqtîdarî ra oyo tewr îqtîdar bivejîyo û bivajo "Ma aştîye wazenîme." Pêro pîya erjînê pêser, yewbinî tan danê, vejînê hermeyanê yewbinî ser ke vengê xo dahîna pêt bivejîyo. Heta ke qirrika xo dirnê çikenê, zirçenê ke esasen aştîye ma rê baş a.

Medyaya ewreyene nîya bê îzan, bê exlaq û bê wijdan a. Sayeya na bêexlaqîye de domanê şarî mirenê, seqet manenê. Şehîdîye goynenê, domananê xo kî nêruşnenê eskerîye. Pêro pîya meyîtê domananê şarê feqîrî ser o polîtîka virazenê. Sey rîyê xo wijdanê xo kî kerdê sîya. Halbukî her çî ra cîya, corenîya heme krîteran de kî krîterê wijdanî estê. Maalesef krîterê exlaqî û yê wijdanî qurbanê menfaatî kerdê.

## Tayê mirinê tayê şehîd benê

Çapemenîya ke bi ziwanê dewlete qisey kena tayê gencan rê "merdî" yan kî "amey kiştene" vana. Tayêne rê kî "şehîd bî" vana. Yanê lugatê înan de tayê mirenê tayê kî şehîd benê. Tabî no namekerdîş kî goreyê fikrê îqtîdarî vurîno. Mesela parpêrar ke yew gerîla bikişîyo, vatêne "heyatê xo kerdo vîndî". Çike o wext îklîmê aştîye hakîm bî. Nika vanê "alçaxî amey kiştene". Çike nika tayê kesî herb wazenê.

Ma xamê nê tebîran nîyîme. Serranê heştayan de, newayan de TRTyî meyîtê gerîlayan têleye de rêz kerdêne, nêzdî ra musnayêne û vatêne nê xayînî armenî yê. Seke eke armenî bibê kiştena xo farz a. Tayê cendegî nêmecet bî, yê tayêne lewpirnikê xo çin bî. Belkî ma û pîyê înan bi no tore domanê xo dîyêne. Kuya însanîya nînan, kuyo wijdanê nînan!

Kes hetê dayîkan ra, bi çimanê dayîkan, bi zerrîya mayan qaytê herbî nêbeno. Nîmetanê îqtîdarî çimê hemîne kerdê kor. Ê tena cebanê xo de qayt kenê, ê tena kara xo vînenê. Meyîtê lajanê şarî (ha merde, ha şehîd ferq nêkeno) heta ke înan rê kare peyda kerde muhîm o, ey ra dot manayê xo çin o.

Nê ke îqtîdar ê, nê ke orte de herbî goynenê, nê ke polîtîkaya xo meyîtanê lajanê şarî ser o virazenê, bi gonîya gencan pay ra vindenê çayê bixo nêşonê herb? Çayê domananê xo nêruşnenê? Çayê eskerîya xo bi pere kenê? Çayê domananê xo rê rapor gênê ke meşero eskerîye? Şarê Tirkîya key nê persan perseno? Heta ke şarî vengê îtîrazê xo berz nêkerd, heta ke seba îqtîdarê tayêne lajê xo kurban kerdî no zulm nêqedîno.

Nê rojanê peyênan de tayê vengî benê berz labelê medyaya îqtîdarî nê îtîrazan nêvînena. Mayî nêwazenê ke tabutan bivînê yan kî televîzyonan de qalê kiştişê gencan bibo. Tim kî nêwaştêne la bi zorê dewlete vengê xo nêkerdêne. Tayîne kî vatêne "Wa welat weş bo!" Nika vanê "Lajê mi weş bo, ez nêwazena ke yew tabute xo verare kerî, ez wazena ke lajê xo xo verare kerî."

Yew mayê wexto ke yew laj ard dinya, a deqa ra tepîya sereyê aye de "eskerîye" esta. Heta ke ê lajekî bê bela eskerîya xo qedenê maye rehet nîya. No welat de eskerîye seba her kesî derd a. Mi hîna nêdîyo ke yew maye bi zerrî lajê xo biruşno eskerîye, yan kî biruşno ko. Çike mayî wazenê ke bi lajanê xo kokim bibê. Mayî nêwazenê ke wele/herre bierzê gencenîya lajanê xo, kenayanê xo ser. Coka sirê aştîye destmê mayan dero. Key ke mayan va "wa lajê mi weş bo!" o wext ruhê herbî mireno.

## Qiseyo peyên

Kamo/a ke domananê xo nêruşneno/a eskerîye, nêruşneno/a ko, kamo ke lajê xo rê rapor gêno ke eskerîye ra muaf bibo, kamo ke eskerîye bi bedel (pere) keno, kamo ke pere dano û lajanê xo herb ra dûrî vindarneno ma rê qalê welatî-miletî-sakarya mekero, şehîd bîyene megoyno, pê heyatanê domananê şarî kay mekero.

Meydan haca der o, kam ke herb ra zaf hes keno, wazeno ke şehîd bibo, kesî pê înan nêgirewto, domananê şarî meruşno, wa bixo şero.





# Mêjûnuştoxîya edebîyatê kurdan ser o



Roşan Lezgîn

Tayê nuşte û meqaleyê ke derheqê edebîyatê kurdkî de weşanîyenê, fîlmê "Selvi Boylum Al Yazmalım" anê mi vîr. Rejîsor Atıf Yılmazî no fîlm romanêkê edîbê namdar yê qirgizan Cengiz Aytmatovî ver viraşto. Fîlm de, şoferê kamyone Îlyas Îstanbul ra yeno dewa Asya. O û Asya zerrî fînenê yewbînan, remenê şinê Îstanbul. Zewicîyenê, yew tutê înan beno. La Îlyas Asya û pitikê înan o ke newe ameyo dinya waro verdano. Asyaya xerîbe wina bêwayîr û bêçare kewena rayîr û dirban ser. Rastê camêrdêkê bi nameyê Cemşîdî yena. Cemşîd Asya û pitikê aye Semedî rê wayîrîye keno, înan hewêneno. Peynî de bi waştişê zerrîya xo zewijîyenê. Cemşîd, seke tutê ey bo, wina bi şefqet û heskerdiş lajê Îlyasî Semedî rê babîtîye keno. Cemşîd merdimêko kedkar, biwijdan û şithelal o; babî û mêrdeyêko îdeal o.

Dem û dewran vîyareno, rojêk Îlyas vejyeno yeno, beno meymanê Asya û Cemşîdî. Axir têkilîya înan yena o derece ke Asya mecbûr manena mîyanê "babîyê bîyolojîk" û "babîyê kede" yê Semedî de yew tercîh bikero. Asya mîyanê teflûdumanê hîsanê eşqî û wijdanê xo de manena. Peynî de yew qeraro rast, wijdanî û exlaqî dana. Vana "Heskerdiş emeg o" û Cemşîdî qebul kena. Îlyas şino. Edalet tecelî keno; heyat vaya xo ra herikîyeno.

Cigêrayoxê tarîxê edebîyatê kurdkî zî tena bala xo danê tarîxê nuştişê eserî ser û goreyê kronolojî ra averşîyayîşê edebîyatî ma rê îzeh kenê. Bi no qayde kesê ke edebîyatî rê xizmet kerdo, benê qurbanê kronolojî. Mesela, gama ke behsê tarîxê hîkayenuştoxîya kurmanckî beno, vanê hîkayeya tewr verêne Mela Mehmûdê Beyazîdî (1797-1867) nuşta. Mela Mehmûd bi xo edîb nîyo, nuştox zî nîyo, tena wende yo. La îlmê modernî ra, edebîyatê nuştekî ra bêxeber o. Coka hîkayeya "Mem û Zîne" ke nuşta, pêardişêko (kurgu) newe nîyo.

Konsolosê Rûsya yê Erziromî A. Jaba (1803-1894) gama ke wazeno derheqê kurdan de melumat bido arê, rastê Mela Mehmûdî yeno. Tayê mesref keno û sey gelêk eseranê bînan na hîkayeya namdare bi hawayê nesrî bi ey dano nuştiş. Yanî seke Ferhad Pîrbal zî vano, rolê Mela Mehmûdî "tercumekerdiş" û "amadekerdişê kitaban de ardimkerdiş" o. Herçiqas "Mem û Zîn"a Mela Mehmûdî belkî destpêkê nesrê kurmanckî bo, la destpêkê hîkayeya moderne ya kurdkî nîya.





**La hîkayenuştoxanê kirdkî ke peynîya serranê 1990an de, destpêkê serranê 2000an de, bitaybetî înanê ke welat ra nuşt û bi hawayêko berdewam (sürekli) hîkayeya moderne ya kirdkî aver berde, o wext nînan ra xebera kesî ne kovara Tîrêj ra ne zî na hîkaye ra estbî.**

Tayê cigêrayoxê bînî zî vanê, hîkayeya tewr verêne ya kurdkî (kurmanckî) "Çîrok"a Fûad Temoyî ya ke 1913 de kovara Rojî Kurd de weşanîyaya. Cigêrayoxê edebîyatê kurdkî bitaybetî gama ke behsê averşîyayîşê hîkayeya moderne ya kurmanckî kenê, nameyê kovara Hawar, rojnameyê Riya Teze, kovara Gelawêj, kovara Tîrêj, kovara Nûdem, kovara Rewşen rêz kenê. Ê ke tena behsê edebîyatê kirdkî (zazakî) kenê zî behsê kovaranê sey Tîrêj, Vate û Şewçila kenê. Heqê înan esto bikerê. Wa bikerê. La gama ke tena tîra kronolojî ra ewnîyenê, seke vajê "babîyê Semedî Îlyas o" û keda Cemşîdî vîndî bikerê.

Tarîxnusê edebîyatî wazenî wa hîkayeya kurdkî Mela Mehmûdî ra wazenî wa Fûad Temoyî ra bidê destpêkerdiş, mi gore, ronayox û şekildayoxê hîkayeya moderne ya kurmanckî Nûredîn Zaza yo. Firat Cewerî antolojîyê hîkayeyan ke amade kerdo de kronolojîyê hîkayenuştoxan de nameyê Nûredîn Zazayî badê Mela Mehmûdê Beyazîdî, Fûad Temo, Celadet Alî Bedirxan, Kamran Bedirxan, Qedrî Can û Osman Sebrî de zikr keno. Yanî kronolojî de keso hewtin o.

Helbet keda zaf kesanê sey Rojen Barnas, Firat Cewerî, Hesenê Metê û gelêkê bînan averşîyayîşê hîkayeya moderne ya kurmanckî de esta, hîkayeya kurmanckî bi qelema zaf kesan sey kuleya Babîlî tebeqe bi tebeqe bîye berze û resaye halê xo yê ewroyî. La hemîne ra ver, hîkayeya kurmanckî bi qelema Nûredîn Zazayî muşexes bîye, resaye formê modernî. Û nê averşîyayîşî de ne rolê Mela Mehmûdî ne zî yê Fûad Temoyî tey esto. Eke cigêrayoxê edebîyatê kurdkî behsê na rastîye nêkerê, merdim eşkeno vajo ke nuşteyê înan de melumat esto la "wijdan" çin o!

Çunke gama ke Nûredîn Zazayî hîkayeyê modernî nuştî, belkî heta ke şi rehmet zî, xebera ey hîkayeya Mela Mehmûdî yan zî Fûad Temoyî ra çin bî. Yanî Nûredîn Zaza bi ê hîkayeyan weye nêbîyo, mîrasê înan ra nêwerdo.

Na rewşe seba hîkayenuştoxîya kirdkî zî eynî ya. Rast a ke hîkayeya tewr verêne ya kirdkî hetê Malmîsanijî ra 1979 de nusîyaya û kovara Tîrêj de weşanîyaya. La hîkayenuştoxanê kirdkî ke peynîya serranê 1990an de, destpêkê serranê 2000an de, bitaybetî înanê ke welat ra nuşt û bi hawayêko berdewam (sürekli) hîkayeya moderne ya kirdkî aver berde, o wext nînan ra xebera kesî ne kovara Tîrêj ra ne zî na hîkaye ra estbî. Yanî sey kurmancan helqaya rêzila hîkayenuştoxîya ma zî hîkayeya tewr verêne ra beste nîya. Coka hetê kronolojî ra cayê hîkayeya Malmîsanijî edebîyatê ma de esto la hetê "ronayoxîye" ra yew rol yan fonksîyonê xo çin o. Çunke na hîkaye seba hîkayenuştoxanê xo ra dima caran nêbîye model.

Ez edebîyatê kirdkî bidîqet teqîb kena, îstatîtîkan virazena, weşanena. Kam çi nuseno, heta ke mi ra yeno ez wanena. Nê dades serranê peyênan de mi derheqê edebîyatê kirdkî de gelêk meqaleyî nuştî, kovaran de dayî weşnayîş. Nê meqale, îstatîstîk û lîsteyî keyepelê Zazakî.Netî de sey dîjîtal zî estê. Kam ke biwazo eşkeno yew deqa de bireso ci, biwano yan kopya bikero, ci ra îstîfade bikero. Û gelêk kesî qet texsîr nêkenê goreyê keyfê zerrîya xo ya bele, goreyê wijdanê xo ci ra îstîfade kenê zî! Labelê zaf zêde ra yan binê tesîrê nê meqaleyan de manenê yan zî nêeşkenê sewbîna çîyêk binusê, coka nê meqaleyan tekrar kenê. Derheqê hîkayeyan de zî derheqê edebîyatê modern yê kirdkî de zî rewşe wina ya. Yanî seke sewbîna çîyêk çin o binusê yan vajê, kam ke yew meqale nuseno yan zî xo sey pisporê edebîyatê kirdkî vîneno, îstatîstîk û melumatê ke mi tespît kerdê, bê ke çime nîşan bido, nînan tekrar keno, yewna çîyo newe nêvano.

Ömer Dilsoz:

# Paşxana min, çîrokên bapîrê min e

Mehmet Emîn Kan




**Dilsoz, edebiyata bakur wiha nirxand; "Li bakur, xwendin û nivîsîn her ku diçe zêde dibe û bi vebûna beşên kurdolojiyê jî bandoreke erênî li ser wêjeyê dibe. Kelecanekê dixe dilê xwendekaran, lê di rewşa heyî de mirov nikare bêje ev têr dike, zimanê ku perwerdehî pê neye dayîn geşedan jî bi hêsanî pêk nayê, lê tevî vê rewşê jî geşedaneke baş heye."**

Gelo nivîskarek çawa digihîje, paşxaneya xwe ji çi distîne, li bakur û başûr niha rewşa wêjeya kurd çawa ye, hejmar û çawaniya berhemên wêjeyî çawa nin? Babetên niqaşê yên li ser wêjeya kurd nexasim piştî ekola Zanîngeha Artuklu û sazî û dezgehên bi kurdî re têkildar, her ku diçe zêde dibin û bala herkesî dikişînin. Bi vê hilkeftê me xwe gihand nivîskar Omer Dilsoz ê ku bi salan e bi nivîsandina kurdî re mijûl e û xwediyê pênc roman, pirtûkeke helbestan û pirtûkeke wêjeya zarokan e, me pê re sohbeteke têr û tije kir. Dilsoz got ku digel em nikaribin wêjeya kurd bidin ber ya cîhanê jî cewhereke me ya zargotinê heye û heke em karibin bi dîsîplînekê û bi rengên kurdî wan li hev bînin, wê wêjeya me jî geş bibe. Û dom kir: "Ji ber Kobanê, niha dinya alemê bala xwe daye kurdan, li ser jinên kurdan diaxive û wêje û siyaseta kurd jî li bakur deng vedide; Çimku li başûr çi bibe jî, li cîhanê deng venade.

**Wêjeya kurd wê ji bakûr li cîhanê bilav bibe**

Nivîskar Omer Dilsozê xwediyê kurdiyeke xweş û dewlemend, behsa paşxaneya xwe ya nivîskariyê kir û got ku ew di malbateke kurdewar de mezin bûye û bapîrê wî çîrokbêjekî gelekî jêhatî bûye û ew çîrok bûne destpêka lipeyketina sir û gîza peyvan û sira gotin û peyvan ew mest kiriye û ew efsûn bûye sedema lêgerîna wateya jiyanê. Dilsoz got ku di lêgerîna xwe ya nasnameyê de bandora herî girîng çîrokên bapîrê wî bûye û wisa domand: "Mînak Rustemê Zal, Bêjeng û Mîrza Mihemed di xeyalên min de bûbûn qehremanên gelekî mezin. Ez wisa difikirîm ku min digot ew li pişt çiyayan dijîn û min çîrokên warên pişt çiyê di xeyalên xwe de dihewandin. Ew bûn destpêkekê ku ez li pey nivîsê bikevim. Çimku nepeniyeke wê hebû." Dilsoz got ku nivîskar di dema afirandinê de hakimê wê mijarê ye, ew rolan belav dike qehremanan û ev bûye bingeh ku qada nivîsandinê bala wî kişiyaye û piştî ku çûye dibistanê dest bi nivîsandinê kiriye, digel ku nivîsandina bi kurdî xeter bûye. Dilsoz got ku bi pêşniyara mamosteyê wî nivîsarên xwe neavêtiye û piştre jî ketiye li pey kurdînûsiyê çûye. Piştre Dilsoz, xwe gihandiye kesên li Colemergê dizîka bi kurdî re mijûl dibûn û bandoreke erênî li ser wî kirine.

**'Soran ji wêjeya kurmancî ne haydar in'**

Dilsoz, rewşa wêjeya kurmancî û soranî nirxand û got ku ew beşdarî du fuarên li Hewlêre bûye û wêjeya soranan jî dişopîne û dom kir: Li başûr, pirtûkên bi tîpên latînî gelekî kêm in û bi qasî min çavdêrî kir bi gelemperî pirtûkên bi soranî û erebî balê dikişandin û wêjeya Kahîreyê bandor li ser wan kiriye. Bi taybetî ji wêjeya Rojava ji bo soranî pir werger dihatin kirin. Di nava wan de wek giravekî piçûk wêjeya Badînî jî hebû, lê ew jî hinekî bi tenê maye. Dilsoz destnîşan kir ku li başûr têkiliya bi wêjeya bakur ve hinekî qels maye û gelek berhemên soranî ên wekî berhemên Bextiyar Elî, Ferhat Pîrbal û hwd. hatine veguhestin û kurmanc wan dixwînin, lê bi giştî ji bilî pirtûkên Jan Dost û Helîm Yûsiv pirtûkên ji kurmancî wergeriyane soranî tune ne û ji ber vê jî haya soranan ji wêjeya bakur tune ye. Dilsoz, edebiyata bakur wiha nirxand; "Li bakur, xwendin û nivîsîn her ku diçe zêde dibe û bi vebûna beşên kurdolojiyê jî bandoreke erênî li ser wêjeyê dibe. Kelecanekê dixe dilê xwendekaran, lê di rewşa heyî de mirov nikare bêje ev têr dike, zimanê ku perwerdehî pê neye dayîn geşedan jî bi hêsanî pêk nayê, lê tevî vê rewşê jî geşedaneke baş heye."

**'Wêjeya kurd ji ekola mamostetiyê tê'**

Omer Dilsoz got ku tevî şert û mercên neyînî, wêjeya kurd niha bi asteke bilind tê afirandin û wiha dom kir: "Di nav çerxa nivîsandina bi kurdî de, bi piranî kesên ji kevneşopiya siyasî tên, kesên xwedî îdeolojiyekê ne, qederekê serê xwe êşandine, felsefe dizanin, di nav jenerasyona siyasî de dikelin paşê dest bi nivîsandinê dikin. Ji ber ku nivîskar û xwendekarên bakur bi piranî polîtik in berhem jî di warê ramanî de baş in, lê belê di warê mekanîzmayê de pirsgirêk hene. Sedem jî tunebûna perwerdehî û otorîteya siyasî ye. ji ber van sedeman, pirtûk zêde dibin û belav dibin, lê rexne li serê naye kirin. Ev yek jî di nivîskaran de rehawetiyekê çêdike. Lê ji bo ku nivîskar xwe zêde bike û nas bike divê di aşê rexneyê de bê hêran." Omer Dilsoz, qala tîpolojiya nivîskaran jî kir û got ku ji sedî not û nehên kurdînûs mamoste ne û heta êvarê perwerdehiya bi tirkî didin û piştre rûdinên li ser kompîturê û dinivîsin, ev tiştekî gelekî tirajîk e. dilsoz got ku wêjeya me li ser ekola mamostetiya tirkî şîn dibe û xwendevanên me jî bi piranî xwendekarên zanîngehan in, bi piranî di pola duyem de dest bi xwendina kurdî dikin û du sê pirtûkan dixwînin û dibin rexnegir. Dilsoz bale kişand ser girîngiya çawaniya rexnegiran û got ku ji bona ku mirov bibe rexnegir, divê mirov di serî de niviskarekî têr û tijî be û ji nivîsaran bihurîbe û berî her tiştî divê pîvan hebin, dema ku em li cîhanê dinêrin em dibînin ku rexnegirên ciwan tune, lewre berî ku dest bi nirxandinê bikin xwe pêş dixin û bi hezaran pirtûk dixwînin, bi deh salan bi hezar çavî lê dinêrin, ji bo geşedan û pêşveçûna wêjeya kurd bingeheke bi vî rengî divê.

**'Em ji erdnîgariyê sûdê wernagirin'**

Dilsoz, di warê wêjeyê de qala girîngiya erdnîgariyê kir û wiha axivî: "Bandora erdnîgariyê li ser avabûna mirovan heye. Her kes dişibe axa xwe, her kes dişibe av û bayê xwe. Lê di wêjeya bakur de pirsgirêka sereke pirsgirêka mekanê ye ku em erdnîgariya xwe zêde naxin berhemên xwe. Cih û warên me şolî nin, bi bejn û bal in, bes li bakur têkiliyeke xurt bi erdnîgariyê ve tune. Di wêjeyê de mekan, hestî ye, gava hestî tune be goşt hevûdin nagire û laş jî çênabe. Têkiliya bi cih û war re, her wiha têkiliya bi ziman re ye jî, lewre zimanê wî mekanî heye. Divê tu termînolojiya wê bizanibî.



**'Rojnamegerî dibistana nivîskariyê ye'**

Weke ku tê zanîn Omer Dilsoz, ji kevneşopiya rojnamegeriyê tê û hê jî di malperan de nivîsarên wî tên weşandin. Bi vê hilkeftê me têkiliya nivîskarî û rojnamegeriyê jê pirsî, wî jî got ku rojnamegerî û nivîskarî du karên di nav hev de ne û hev temam dikin. Dilsoz got ku nivîskar jî deqên xwe li ser agahiyan ava dikin û rojnamegerî bixwe jî karê agahiyan e, lê xeteriya wê ew e ku stresa rojnamegeriyê heye û divê tu bilez bikî, berovajî di nivîskariyê de jî divê tu hêdî hêdî xebatên xwe bimeşînî, heke mirov bikaribe van herdu tişên berovajî hev bigihîne hev, tiştekî kamil jê derdikeve, hev xurt dikin, gelek niviskarên zexm û gewre ji kevneşopiya rojnamegeriyê tên û rojnamegerî ji bona bingeha nivîskariyê wek dibistanekê ye.





Mehmet Gültekin

**Ev pêvajoya kocberkirina êzidiyan ji Ebexê û sancaqên navborî di salên şerên di navbera Rusya û dewleta osmaniyan yên 1854 û 1877'an de ji berdewam kir. Di şerê cihanê ê yekemîn de ji salên 1914 hetanî 1918'an jî koçberkirina wan an dawîn ji van herêman bi destê artêşa osmaniyan û alayên Hemidiyê qewimî.**



# Êzidiyên Herêma Ebexê

Herêma Ebexê hetanî beriya 200 salan yek ji navendên kurdên êzdî bû ku wan tê de wek binaliyên qedîm bi nifûseke mezin jiyan dikirin. Navê herêma Ebexê di çavkaniyên dîrokî de gelek caran wek Ebâga û Ebgay derbas dibe, di çavkaniyên fermî yên osmanî de jî ev navan hatine bikaranîn. Piştî avakirina komara Tirkiye'yê ev nav bi ser navê Çaldiran hatiye guhartin. Di rastiyê de navê Çaldêran navekî îranî ye ku ji herêmeke piçûk a li aliyê Îranê ango rojhilatê Ebexe re tê gotin. Çavkaniyên îranî wek cîwarê şerê osmanî û safeviyan vê herêma ku niha dikeve aliyê Îranê destnîşan dikin, lê yên tirkî jî neqil dikin, wekî şer li deşta Ebexê destpê kiriye û li Çaldêrana li aliyê Îranê jî bi dawî bûye. Di hin çavkaniyên derbarê şerê Çaldiranê de qala kurdên Êzidî tê kirin û ew destnîşan dike ku di wan salan de ew li herêma Ebexê diman

Ebexe ji rûbarê behrê 2050 mêtreyan bilind e û ji deşteke berfireh ya ku ji aliyê gelek çiyayan dorpêçkirî pêktê, mezinahiya wê bi tevehî dora 2000 $km^2$ ye. Sînorên wê li aliyê başûr digihêjin navçeya Qerqeli ya girêdayî Wanê, li bakûr Gihadîn û Bazîd, li rojavayê herêmên Bergirî û Erdîşê û li rojhilat jî sînorê îroyîn yê Îranê. Bajarê sereke Bazîdaxa ye, ya ku navê wê jî wek Çaldiran hatiye guhartin. Herêma Ebexê hetanî dawiya sedsala 18'an girêdayî mîrektiya Bazîdê bû, piştre dewleta Osmanî ew ji wir veqetand û bi ser eyaleta Wanê ve girêda.

Ji ber ku Ebexe li bilindciyan e û salê deh mehan berf ji çiyayên hawirdora wê kêm nabe, ji ava ku ji helîna berfê dertê di deşta wê de gelek çem û kanî diherikin. Binaliyên herêmê li bajar û gundên di nav deştê de dimînin û du mehên havînê jî li nêzikî gundên xwe konan vedigirin ji ber ku ev herêm bi xwe ji zozan û zomeyan pêk tê. Herêma Ebexê warê herî sar ê li rojhilata nêzîk e, zivistanê sermaya wê carina digihêje bêhtirî kêmek 40 dereceyan.

Seyyah û lêkolînerê Osmanî Mehmed Hurşîd Paşa di berhema xwe ya bi navê Seyâhatnâme-i Hudûd ya ji nîvê sedsala 19'an de dibêje ku ev herêm berê girêdayî sancaqa Mehmûdî ya li ser Hekkariyê bûye û wek mesken û warekî hezkirî yê eşîrên êzdiyan bûye, êzdiyan her aliyê vê herêmê şên û xweş kiribûne û li cihên minasib jî gelek avahî çêkirine. Wan her wiha ji bo parastina xwe li hember dijminan birc û kela jî avakirine û debara xwe jî bi xwedîkirina ajalan û bi cotkariye peyda kirine. Ew pê re navê hin kelayên kevnare wek Dergezîn, Kelareş, Kelaspî, Alkele û Koşka Şêxan jî dinivîse. Piştî ku Mehmed Hurşîd Paşa salixê kela Dergezînê dide, ya ku bi xwe dîtiye, ew nivîsa li ser kêla qoreke bişeml ya mîreke êzdiyan jî neqil dike ku tê de dema mirana wî diyar dibe:

> ***"Nâm ve şanı tutmuşidi serhadd-ı Van'ı***
> ***Tamâm havf edüp cevr eyledi ana bu fani rüzgar***
> ***Bin yüz on dörtde ecel peymânesin nûş eyleyüp***
> ***Menzil-i dünyâyi kodu tuttu 'ukbâda karâr"***

Ango ew mîrê ku nav û dengê wî li Wan a Serhedê belavbûyî bûye di sala 1702/1703'an de çûye dilovaniya xwe. Ji nivîsa Mehmed Hurşîd Paşa diyar dibe ku li dor kela Degezînê gelek gor û avahiyên wêrane di dema serdana wî de hin jî diyar bûne.

Em ji Şerefnameyê dizanin ku hin di qûrna navîn de ev herêm di bin hukmê mîrên Çolemêrgê û yên mîrektiya Mehmûdî de bû. Dema Mela Mehmûd Bazîdî jî di nîvê sedsala 19'an de qala eşîrên eyaleta Wanê dike, ew wek eşîrên kurdên êzdî navê Reşî 200 malbat, Mendikî 200 malbat, Barawî 150 malbat û balekurtî 100 malbatan destnîşan dike. Mela Mehmûd her wiha di hin hikyatên xwe de jî navên êzdî û Ebexeyê bi hev re bikartîne. Hin çavkaniyên kurdî jî van eşîrên li jorgotî bi konfederasyona Şemsikan ve girêdidin û dibêjin ev nav ji Sêşims an jî Şemsê peyda bûye. Goreyî hin çavkaniyan Şemsikan berê ji herêma Şengelê berbi Kurdistana Bakûr belav bûye û goreyî hinan jî ew berêv de binaliyên navçeya Sîlvanê bûne û piştre ji wir berbi navçeyên cuda koçber bûne.

Mehmed Hurşîd Paşa di pirtûka xwe ya navborî de bi berdewamî dinivîse ku beriya 50-60 salan ango di dawiya sedala 18'an de hin eşîrên cuda yên ku di havînan de li Ebexê derketine zozanan û sal bi sal zêdetir li wir cîwar bûne ji ber ku şênî û berhemdariya axa wê li wan xweş hatiye. Van eşîran piştre jî dest bi neheqî û zilmê li hember êzdiyan kirine û ew ji wê herêmê bi dûr xistine.

Di zargotina kurdî ya li vê herêmê û li navçeyên hawirdora wê de jî gelek hikyat û serhatiyên li ser van bûyeran tên vergotin. Dema Kemal Süphandağ di pirtûka xwe ya di derbarê Berxwedana Araradê û eşîra Heyderan de salixê ciwarbûna Heyderan li vê herêmê dike, ew ji bo dawiya sedsala 18'an neqil dike ku di navbera rêberê Heyderan Elî Axayê mezin û rêberê êzdiyan Kok Axa de li van herêman de şer qewimîne û piştî ku Heyderan zora êzdiyan biriye, ev herêm ji xwe re dagir kirine. Ev salixdayîn jî ji aliyê dem û pêşdehatina bûyeran ve gelekî dişibîne bûyerên ku Mehmed Hurşîd Paşa neqil dike.

Pişrtî ku artêşên Împaratoriya Rusya'yê daketin Kafkasya başûr û di sala 1828'an de sancaqên Qers, Erzirom û Bazîdê dagir kirin û di sala 1930'an de dîsa vekişiyan, dewleta osmaniyan goreyî hin çavkaniyan di sala 1834'an de dora 300 malbatên kurdên êzdî ku gelek ji wan malbatan berê li herêma Ebexê diman koçberî bakûrê çemê Erezê kir ku ew bi piranî li gundên Elegezê cîwar bûn. Niha jî gelek kurdên Sovyeta berê hene ku ew xwe li ser wan eşîrên navborî û bi taybetî jî li ser Şemsikan dihesibînin.

Ev pêvajoya kocberkirina êzidiyan ji Ebexê û sancaqên navborî di salên şerên di navbera Rusya û dewleta osmaniyan yên 1854 û 1877'an de jî berdewam kir. Di şerê cihanê ê yekemîn de ji salên 1914 hetanî 1918'an jî koçberkirina wan an dawîn ji van herêman bi destê artêşa osmaniyan û alayên Hemidiyê qewimî. Cangîr Axa ê navdar ku li navçeya Bergirî ango li nêzikî Ebexê hatibû dinê, wek rêberê êzdiyên herêma Wanê di wan salan de dijî komkujiyên dewletê û cerdevanên Hemîdiyê tekoşîneke xurt meşand ya ku bû yek ji mijarên sereke ê kilam û serhatiyên kurdî, pişt re tev êzdiyên mayîn wargihuzî welatê Sovyet a ku nû hatibû avakirin bû.

Kamran Hedilî:

# Nasîna baweriya kevnare xwe nasîn e

Gabar Çiyan

Kamran Simo Hedilî bi helbestên xwe tê nasîn. Lê kesên ku wî ji nêz ve nas dikin, bi qasî helbestên wî, ji lêkolîn û kurbûna wî ya di derbarê baweriyên kevnare, bi taybetî ên li herêma Tora Evdînê, bi giştî ên kurda dinasin. Nivîsên wî derbarê heman mijarê belav bûne. Divê helbestên wî jî bêne xwendin. Bi taybetî li ser evîna ji dil. Hîs û heskirina kur. Dilê mîna volkanek li ber peqînê ku mirov dibe cîhanek din. Giringiya hizkirina yarê, lê bi qasî wê, a mirovahî, xweza û welêt derdikeve pêş. Me xwe gihand nivîskar Hedilî û pê re li ser xebatên wî axifin. Fermo hevpeyvîna pê re...






**Sê xal; helbestvanî, dîroka baweriya qedîm û lêkolîneriya li ser helbestê, aliyên te ên herî xurt in. Kitêbên te li ser van mijaran belav bûne. Pêxemberê jibîrçûyî, Manî kî ye?**

Manî di çardehê Nîsana du sed û şazdehên (14. 04. 216) li bajarê Mêrdînê hatiye dinyayê. Bapîrên Manî ji paytexta Medan, Eqbatan (Hamadan) bi erkê leşkerî têne Mêrdînê. Navê bavê wî Patîg e û navê êla bavê wî, Xaskanî ye. Navê diya wî Marmarcan e û êla diya wî Kemengeran e.

Manî di bîst û şeş (26) saliya xwe de pêxemberiya xwe beyan dike. Manî, Newroza du sed û çil û duyan (242) ya piştî bûyîna Îsa, roja ku Şapûrê kurê Erdeşêrê Papak (Babak) bi fermî derbasî ser textê şahênşahan bûyî de, ola xwe beyan dike. Erdeşêrê Papak (Babak) yê ku împaratoriya Sasanî damezirandî, bajarê Gundêşapûr dike bajarê pîroz. Tenê li bajarê Gundêşapûr, şahênşahan li roja Newrozê dikarîn Taca şahênşahan bigirin. Şahênşahan yê berê di kîjan mehê de bimiriya jî, şahênşahan yê nû li hêviya Newrozê diman û di Newrozê de li bajarê Gundêşapûr yê pîroz bi fermî Taca şahênşahan digirtin. Şapûr ê yekem jî piştî bavê wî Erdeşêrê Papak dimirê, di roja Newroza du sed û çil û duyan de Taca xwe digire. Di wê roja ku bi Şapûr re jî çar aliyên împaratoriyê mirov hatibûne rê û resma Tac girtina şahênşahan, Manî pêxemberiya xwe beyan dike. Manî heşt pirtûk nivîsandin e. Navên wan wisa ne: Sahberdan, Sendokujîne, Riya Rast, Olperestî, Veşartî, Nivista Gernasî, Şapûrîkan û Mizgîniya nû (Încîla nû). Ji bilî van pirtûkek wî ya şêwekariyê bi navê Arjeng heye. Xwestiya bi riya wêneyên di Arjengê de, bingeha baweriya ola rastî nîşanî her kesî bide. Gelek tiştên ku diviyabûn werin dîtin bi riya wêneyan di Arjeng de nîşan daye. Manî bi xwe dibêje: ´´Ez dizanim ku herkes nikare nivîs û pirtûkên min bixwînin. Lê herkes dikare li wêneyên di Arjengê de binêrin.´´ Manî ola xwe li ser prensîbên ola Zerdeşt, Buda û Îsa didêne. Ji Zerdeşt, bingehê başî û xirabiyê digire û ola xwe li ser bingeha bi ronîkirina nava xwe li dijî tariyê derketinê ava dike. Ji Buda, prensîbê ehlaqê nefsa xwe terbiyekirin, rastî, aqil, xwe bi xwe ronîkirin û bi vîn xwe ji xirabiyan dûr girtinê digire. Ji Îsa jî li dijî bê ehlaqiyê, ehlaqê paqij û aramiya mirovahiyê digire.

Manî baweriya van hersê pêxemberan digihîne hev û oleke nû beyan dike. Di ola Manî de neşêwekarî, nepeykersazî û nemûzikjenî neqedexene. Di mizgeftên wî de jin û mêr bihev re cem û nimêjên xwe dikin. Di bingeha ola wî de mirov heye. Manî li sala du sed û heftê û şeşan (276) li bajarê Gundêşapûr bi fermana Bahremê kurê Şapûr bi êşkişandinê tê kuştin.

**Giringiya bîranîna baweriyên kevnare û lêkolînên derbarê wan de çima giring in?**

Berî hertiştî divê bêjim ku, gelên dîroka xwe û zanên dîroka xwe nizanibin û wan nasnekin dê nikaribin baş hatina xwe plan bikin. Ev ji bona hemû gelan wisa ye û ji bona kurdan sed carî zêdetir ev zanîn pêwîste. Ji ber ku dagîrkerên ku welatê kurdan dagîrkirine, ne tenê dewlemendiyên wan yên sererd û binerd dibin. Dîroka wan jî ji mêjiyê wan dişon û berevajî dikin. An jî lehengên kurdan ên dîrokî dikine malê xwe. Kurd pêşengên xwe yên siyasî, çandî û olî baş nas nakin. Bi naskirineke nîvco nas dikin. Heta dikarim bêjim ku, tenê navên wan bihîstine. Ew jî bi şaşî bihîstine. Ji ber ne ji nivîskarên xwe, lê ji nivîskarên biyanî bihîstine û bi nivîsên biyaniyan hatine nasandin. Kurd bi pêşengên xwe yên kevin nikarin serbilind bibin. Bi serbilindî nizanin bêjin ku em neviyên wan e. Bi sedan lehengên dîrokî yên kurdan hene ku, mohra xwe li dîrokê xistine û xizmeta pêşdebirina mirovahiyê kirine. Pewîste ku ev lehengên dîrokî bi destên dîrokzanên kurd werine nivîsandin û bi romanan bi çîrokan bi helbestan bi şêwekarî û bi fîlmên sinemayî werine gotin. Da ku kurd bi serbilindî bêjin em neviyên wan e.

**Lêkolîna te li ser mijara, ’helbest çi ye’, belav bû. Min kitêba te xwend. Di çarçoveya lêkolîna te û baweriya te de helbest çi ye?**

Min ji bona ku zanibim bê helbest çi ye, pirtûkek nivîsand. Lê tu dixwazî ez bi çend hevokan bêjim. Ez dikarim bêjim: Helbest jiyan bi xwe ye. Ew, giyanê felsefê ye. Lorîna hestê û strana dil e. Lê ev kêm dimînin û nayê têgihiştin. Ez dipirsim: Gelo danasîna helbestê dibe, an ne mimkun e ku were nasandin? Çawa mirov dikare helbestê bide naskirin? Sedem çi ye ku heta vê gavê helbest neketiye nav çarçova danasandineke bi tenê? Çima biqasî helbestên hatine nivîsandin, ewqasî jî danasîn hatine kirin? Gelo çima helbesteke sipehî û xurt dema ku em dixwînin, an jî em guhdar dikin, bandorê li me dike? Çawa me hestyar dike û bi dilxweşî me dibe cîhaneke din? Di hizirkirinê de rola wê çi ye? Çêja hestên helbesta ku bi rastî helbest be, zewqa estetîkî ku dide mirov, çima beşên çande yên din nadine mirov? Wekî van pirsan gelek pirs hene ku besivên wan werin dayîn. Ez bi çend mînakên cuda danasîna helbestê bikin. Helbest; avahiya bi kêmhevokan ava dibê û nivîsa ku hest û xeyalên mirov li ser mijarekê kilît dikê ye. Hunera dilvekirina peyvê, şadiya xeyalên ku di kûrahiya hevokan de ye. Zanîna nependî ya ku kêmasiyan vediguherê sipehîtiyê, ramana nazik û zimanê muzîkê ye. Helbest; ji aqil bûrîn û dûrbîna xeyalê ye. Danasîn wisa diherikin û diçin

**Çima kurd ewqasî bi sempatî û evîndarî nêzî helbestê dibin?**

Ji ber ku dilê kurdan birîndare û helbest jî strana dil e, kurd wisa bi evîndarî nêzî helbestê dibin. Kurdan têkçûnên xwe, serkeftinên xwe bi stran û helbestê anîne ziman. Heta mirov dikarê bêje ku kurdan hemû niyaz û fermanên xwe yên olî jî bi helbestê anîne ziman. Mîneke balkêş, ya di yek ji olên kevinên cîhanê, ola kurdên Êzîdî de em dibînin. Qewlê afirandina dinyayê bi şêwê helbestê hatiye nivîsandin û heta roja me hatiye. Em li vî qewlê afirandina dinyayê binêrin.

“Ya Rebî dinya hebû tarî  
Tê da tunebûn mişk û marî  
Te zindî kir taze halî...  
Tu hostayê her tiştî  
Behuşt çêkir renge bî  
Erd û asîman tunebûn  
Dinya fireh bê bin bû  
Te xek saz kir...

Gelek helbestên bi vî şêweyî hatine nivîsandin û gotin hene.

**Dema tu helbestên duhî, ji dema Xanî, Feqî û îro dide ber hev, aliyên xurt û qels ên helbestvanan hene. Li ser vê pirsê dîtina te çiye?**

Her dem, helbestvanên xwe yên serkeftî û nesekeftî diafirêne. Di serdema ku Melayê Cizîrî, Feqiyê Teyran û Ehmedê Xanî heyîn û helbestên serkeftî nivîsandin de helbestvanên ku neserkeftîbûn û nekarin xwe bigihînine roja me jî hebûn. Di roja me de jî helbestvanên ku helbestên xurt divinîsin hene û yên ku helbestên lewaz dinivîsin hene. Bi baweriya min helbesta kurdî ne gelekî lewaze û gelek helbestvanên ku helbesta xurt dinivîsin hene. Dema ez helbestên wan dixwînim, ez xurtiya helbestên wan dibînim û bi dilxweşî dixwînim. Lê li cem van helbestên bi çêj, gelek helbestên lewaz jî têne nivîsandin.

**Çima evîn, hesret û heskirina cî û yarê?**

Hesret tiştekê ku ji zarokîtiya min ve bi min re ye û bawer dikim dê heta dawî jî bimîne. Ez zarok bûm, di welate xwe de bûme mişext. Bi vê mişextiya min re hesreta gundê min, konê xwe di nava min de vekir. Min hemû hevalên leyîstikên xwe bi cih hiştin û li bajêr hevalên nû naskirin. Lê ne hevalên leyistikan, hevalên kar û zahmetiyê bûn. Li navbera zarokî û ciwaniyê, min sitema dagîrkeran naskir û li dijî wî serê hilda. Di vê serhildanê de cara duyem li welatê xwe bûme mişext û qaçax. Konê hesreta min mezintir bûn. Li vê qaçaxî û mişextiyê, hesreta heskiriyên min û azadiyê li hesreta gund û hesreta hevalên leyistikên min bar bû. Di dawî de necar mam ku evîna xwe bi cih bihêlim û her li wê bigerim. Barê evînê bû serbarê hesretê. Êdî ji kezkeza min dengê evînê jî tevlî dengê hesretê bû. Bi demê re evîn, hesret û hezkirin di giyanê min de bûne yek û bi hev re gih lorîn, gih bi hev re qêrîn, gih bi hev re koçber bûn û li cih û warê xwe geriyan. Heke bi kurtasî bêjim, helbesta min, jiyana min e. Ez jiyana xwe tînime ziman û wê dibêjim. Ez dixwazim bibime şahidê roja xwe û bûyarên roja xwe binivîsim. Çarenivîs e ez di vê serdema ku di welatê me de hemû tişt têne guhartin anîme cîhanê û ez hewil didim ku van guhartinan di helbestê de bînime ziman. Ez bûme şahidê mirina bi sedan ciwanên bêtawan û bi sedan têkçûnên bêhngenî. Bi van re bûme şahidê serkeftinên hêja û dixwazim van serkeftin û têkçûnan di helbesta xwe de bi evîn, hesret û hezkirinê re bînime ziman. Bi helbestê bêhntengiya giyanê xwe, hinekî aram dikim. Helbest bûye mala aramiya giyanê min û bi helbestê êş, jan, şadî û xemgîniyên xwe tînime ziman.